5

بیرۆکەکەی لە رشتەی مرواری وەرگرتووە

## ماهیر خەریکی خورشه کوێره



**Dalkurd û Umea**

Du favoriyê lîgê tên hemberê hev! 3 pûan wê kî bistîne? 8


# Rûdaw

ÇAPA EWROPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora

Hejmar / Nr. 111
01 Îlon / September 2011

Deutschland 1,50 Euro | Österreich 1,50 | Belgium 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Norway 15 NOK | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK




## Hunermendno, piştgiriya Rojavayê Kurdistanê bikin!

**Hunermendê kurd Nizamettin Ariç siyaseta Kurdên parçeyên din yên Kurdistanê derbarê Rojavayê Kurdistanê de tevlîhev û bifikar dinirxîne. Ariç fedekariya Kurdên Rojavayê Kurdistanê di her şoreşek li beşên din yen Kurdistanê bibîr tîne û bangî hemû hunermendên kurd dike ku li benda helwesta siyasetmedaran nemînin û dest bi piştgiriya Kurdên Rojavayê Kurdistanê bikin.** 9

## Nêçîrvan Barzanî:

# Daxuyaniyên Erdogan şaşî bûn



Di hevpeyvînek ligel Rûdawê de Nêçîrvan Barzanî ji ber pevçûnên vê dawiyê di navbera PKKê û Artêşa Tirk de rexneyan li siyaseta PKKê ya piştî 12ê Hezîranê dike û herwiha dibeje ku “ew daxuyaniyên vê dawiyê yên Erdogan, dema got li Tirkiyeyê pirsa Kurd tune, ne tiştekî rast e û şaşî ye”.

10 / 11 »

Wêne: Rûdaw

**Sekreterê PDK-Sûriyê, Dr. Ebdulhekîm Beşar:** Ji sedî 50 ji Kurdên Sûriyê ligel partiya me ne. 5

**Swîsre:** Piştî ku malbatek kurd bû xiristiyan, mafê penaberiyê wergirt. 2


4 191631 701506 00035

9 771869 104000 35

Great Britain

Malpera nû ya Rûdawê vebû

Rûdaw.eu

www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

Serboriya malbatek kurd li Swîsre

# Bû xiristiyan û mafê penaberiyê wergirt



**Ji min re wê baştir be ku zû bersivek neyînî wergirim, li şûna ku qet bersivekê wernegirim**

**Koln (Rûdaw) -** Li gor nûçeyek malpera "20 minuten" a swîsreyî, malbatek kurd a ji Rojavayê Kurdistanê bi paşveşandina Sûriyê rûbirû mabû. Lê piştî ku malbatê ola xwe guhert û bû xiristiyanî, Swîsreyê bi sedema ku jiyana wan weke "xiristiyanî" wê li Sûriyê bikeve metirsiyê, mafê penabertiyê da malbatê.

Malbata Hasso beriya 3 salan ji Sûriyê hatibû Swîsreyê û ji bo penabertiyê sê caran serî li dezgehên swîsreyî dabûn, lê serlêdana wan nehatibû qebûlkirin. Piştî ku malbata Hasso, ku Kurdên misilman bûn, ola xwe guhert û bû xiristiyanî, mafê penabertiyê wergirt û wê êdî li Swîsre bimîne.

Malpera "20 minuten" radighîne piştî ku Farûq û Horiya Hasso ligel keça xwe Tîrêj ola xwe guhertine û bûne xiristiyanî, ji aliyê malbata wan li Sûriyê gefê kuştinê ji wan re hatine. Tevî van gefan û piştgiriya siyasetmedarên partiyên konservatîv-rastgir yê swîsreyî jî, dîsa malbata Hasso destpêkê mafê penabertiyê wernegirt. Li gor ku "20 minuten" dinivsîne, rewşa nediyar malbat xistiye rewşek derûnî ya gelekî nebaş û li ser vê yekê Horiya nameyek ji wezîra swîsreyî Sommaruga re nivîsandiye û jê re behsa çiroka xwe kiriye û daxwaza bersivdana serlêdana wan a penabertiyê kiriye û wiha ji wezîra swîsreyî re nivîsandiye: "Ji min re wê baştir be ku zû bersivek neyînî wergirim, li şûna ku qet bersivekê wernegirim."

Du hefteyan piştî vê nameyê biryara erênî gihişt malbata Hasso, herwiha nameyek sipasiyê ji wezîr Sommaruga jî gihişt malbata Hasso. Sommaruga di nameya xwe de dibeje ku guhertina ol bi serê xwe nabe sedem ji bo wergirtina mafê penabertiyê, lê malbat di jêr metirsiyê de ye û ji ber vê yekê ew dikevin statuya penaberan.

Li gor malpera "20 minuten", Horiya Hasso, tevî hêstirên çavan, bi van gotinan biryara rayedarên swîsreyî pêşwazî kiriye: "Ez spasiya Xweda dikim ku Bern [de fakto paytexta Swîsreyê - Rûdaw] ji me fam kir. Niha êdî ez dikarim ji nû ve jiyana xwe dest pê bikim û ne mecbûr im ku bimirim." Li ser pirsek malpera "20 minuten", ka gelo ew emîn e ku xiristiyanî rêya wê ye, Horiya Hasso wiha bersiv daye: "Belê, sipasiya Xweda dikim, bêgûman. Ez beriya 13 salan, dema ez 20 salî bûm, bûm xiristiyanî. Lê li Sûriyê min tenê dikari veşartî erkên xwe yên olî pêk bînim." Horiya Hasso li ser pirsa "ew ji çi ditirsin, eger paşve werin şandin?", bi van gotinan tirsa xwe ji paşveşandina Sûrîyê vegotiye: "Tirsa me ya herî mezin ji polîsên Sûriyê ye. Lê tirsa me ji malbata me jî heye, ji ber ku ew dizanin ku em bûne xiristiyanî. Du îmam jî di malbata me de hene."

Weke ku malpera "20 minuten" radighîne, piştî ku malbata Hasso ola xwe guhert, tirsa wan ji misilmanên li Swîsreyê dijîn û ji malbata wan a ku li Sûriyê dijî heye. Ji ber vê yekê jî jiyana malbatê di metirsiyê de tê dîtin û malbata Hasso li cihekî nediyar hatiye veşartin û navnîşana wan nayê eşkerekirin.





## Kurdêk hat gulebarankirin

**Hollanda (Rûdaw) -** Li bajarê Hollanda Utrechtê roja 26ê tebaxê hevwelatiyek kurd ji aliyê kesekî nenas ve rastî êrîşa guleyan hat. Di encamê de zilamê kurd birîndar bû, lê polîs teqeker nedît.

Çavdêreki bûyerê ku nexwest navê wî bê nivîsandin ji Rûdawê re ragihand kese ku gule lê hatine teqandin Kurd e û kesê ku teqe kiriye jî xortekî mexrîbî ye. Li gor agahiyên ku wî kesî dane Rûdawê roja 26ê tebaxê li navenda bajarê Utrechtê di berberxaneyekî de dengê çend guleyan hatiye û piştre jî polîs hatiye cihê bûyerê. Polîsê Utrechtê jî ragihand ku piştî teqînê ew gihanê cihê bûyerê û xortê birîndar rakirine nexweşxaneyê û ketine dû kesî teqeder, lê ligel hemû geran hê ew nedîtine û negirtine.




**Rûdaw**
Rojnameyeke siyasî û heftane
**Xwedî**
Rudaw Media GmbH
**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com
**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu
**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com
Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com
Besam Mistefa
wardoz@gmail.com
Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com
**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu
**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de
**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçî
**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany
**Pêwendî**
Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net / www.rudaw.eu
info@rudaw.eu
**Belavkirin / Vertrieb:**
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de
Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

# AKPya Amedê li ber derizîne ye

**Cîgirê serokê şaxê AKPê yê Amedê:**
Hêrs gihiştiye pozê me û ger partiya me guhdariya me neke em ê dest ji kar bikişînin

**Hêmin Xoşnaw**


Wêne: Rûdaw
Apê Qasim ji siyaseta Serokwezîr Erdogan aciz e û dibêje "wî sozê ku beriya hilbijartinê dabû neaniye cih"

Apê Qasim li ber deriyê baregeha navenda BDPê li bajarê Amedê, ligel rabûna çend firokeyên şer ji firokexaneya şer ya Amedê ku eşkere ye berbi Qendîlê difirin, bi dengekî bilind û tije acizî dibêje: "Erdogan di televizyonê de digot piştî cejnê diçim Qendîlê û dibim mêvanê kurê Abdullah Demîrbaş!." Adbullah Demîrbaş serokê şaredariya Sûr a Amedê ye, par kurê wî tevlî gerîllayê PKKê bûye.

Gava min pirsiyar ji Apê Qasim kir ji ber çi wisa bi hêrs e? Bi girnijîn got: "Eger me rê nedaba kesên mîna Galîp Ensarioglu (parlamenterê AKPê li Amedê) xwe berbijar bike, îro Erdogan ewqasî har nedibû."

Bordûmana çiyayê Qendîl û navçeyên sînorî yên Herêma Kurdistanê ji aliyê artêşa tirk, Kurdan ji AKPê ya desthilatdar dilteng û aciz dike. Ev acizî tenê di nava cemawer û kadroyên BDPê de nayê dîtin, lê gihiştiye wan Kurdan jî ku dengê xwe dane AKPê û bi ser de jî hinek ji wan kesên ku li ser lîsteya wê partiyê jî gihiştine parlamento.

Hemû ew firokeyên şer yên ku navçeyên sînor û gundên derdora Qendîlê borûdman dikin û bûn sedemê koçberbûna gelek kesan, ji bingeha esmanî ya bajarê Amedê ku ser bi fermandariya hêzên esmanî yên Tirkiyeyê ye, difirin. Ligel firîna her firokeyekê qehira xelkê bajêr ji vê reftara hikûmeta AKPê zêdetir dibe.

### Cîgirê serokê CHPê: Ev kêşe bi şer çareser nabe

Cîgirê serokê CHPê û parlamenterê bajarê Stenbolê Sezgîn Tanrikulu ku ji Amedê ye, rexneyan li siyaseta hikûmetê li ser operasyona esmanî û gefa operasyona bejayî bo nav xaka Herêma Kurdistanê digire. Tanrikulu di daxuyaniyekê de bo rojnameyên Tirkiyeyê got: "Dema wê yekê qediyaye ev kêşe bi şer çareser bibe, lewma divê li dîtina çareseriyeke aştiyane bê gerandin."

Hevdem cîgirê serokê liqa Amedê ya AKPê parêzer Muhamed Dara Akar nerazîbûna xwe li himber şêwaza reftarkirina hikûmeta AKPê ligel kirîzê pêşan da û pêkutî kir li ser wêya ku acizî û nerazîbûn di nav xelkê Amedê de gihiştiye zîrvê û bo Rûdawê got: "Hêrs gihiştiye pozê me, hinek ji endam û hevkarên me dibêjin em ê îstîfa bikin. Eger guhdariya me nekin em neçar in îstîfa bikin."

Di vî warî de jî bi baweriya wan, destpêkirina gotûbêjan ligel Ocalan tena rê ye bo agirtina wê şîdeta ku piştî kuştina 10 serbaz û caşekî di 17ê vê mehê de li ser rêya Colemêrg – Çelê derketiye holê. Herwiha bi dîtina wan ku vegera parlamenterên BDPê bo parlamentoyê heya cihekî rolekê di xavkirina rewşê de dilîze.

Cîgirê serokê liqa AKPê li Amedê dibêje: "Em daxwaz ji hemû parlamenterên kurd ên AKPê dikin hewldanên xwe zêde bikin da ku di navbera BDPê û hikûmetê de diyalog bê holê. Di heman demê de em daxwazê ji wan dikin di nava rêzên AKPê de milmilane bikin daku siyaseta sivîl bo çareseriya kêşeya kurd bibe bingeh. Pêwîst e hewldan bên domandin heya ku serokwezîr û hikûmetê razî bikin kêşeya kurd bi tedbîrên aştiyane çareser bikin."


**Av. Muhammed Akar: Ger wiha here lîberal jî ji piştîvanîkirina AKPê poşman dibin.**

**Akar: Bi baweriya min Ocalan hefteya bê agirbest îlan dike, PKK agirbestê pêk tîne û piştre hemû kar dikeve ser milê parlementerên kurd yên AKP û BDPyî.**

Di heman demê de parlamenterê BDPê li bajarê Mûşê Demîr Çelîk ku weke kesekî nerm di raya giştî de naskirî ye, got: "Xelkê Tirkiyeyê bi rêjeyeke zêde bo çareserkirina kirîzan dengê xwe dane AKPê. Millet naxwaze kêşeyên aborî û civakî û çandî bên holê. Ger AKP van kirîzan çareser neke ne tenê Kurd lê lîberal, çep û demokratxwaz jî ji piştgirîkirina AKPê poşman dibin û muxalefeta li dijî AKPê xurt dikin."

Ji aliyekî din, herçar parlamenterên BDPê Selahattîn Demîrtaş, Ahmet Turk, Gultan Kişanak, Aysel Tugluk nivîsarek pêşkêşî wezareta dadê ya Tirkiyeyê kirin daku rê bidin wan herin Îmrali bo dîtina Abdullah Ocalan.

Bi baweriya Mihemed Dara Akar rewşa parlamenterên kurd yên AKPê giran e û divê BDPê piştgiriyê li proseya vebûna demokratîk bike. Derbarê destpêkirina gotûbêjan jî ligel Ocalan, Akar dibêje: "Li gor ezmûna min ya siyasî, Ocalan hefteya dahatû agirbestekê dike, paşî PKKê agirbestê radigihîne û hemû bar dikeve ser milê parlamenterên kurd di nava AKP û BDPê de daku hewldana çareseriyê di nava parlamentoyê de bidin."

Demîr Çelîk, rola destpêkirina gotûbêjan ligel Ocalan înkar nake û dibêje: "Ramana destpêkirina gotûbêjan ligel Ocalan ne tenê di nava AKPê de ye, lê di nava CHPê de jî ev deng heye. Li seranserê Tirkiyeyê xelk dixwaze bo çareseriyê gotûbêj ligel Ocalan destpê bike."


**Demir Çelik: Ez hêvî dikim wê AKP rê bide serdana Ocalan bikin.**

Derbarê giringiya serdana parlamenterên BDPê bo Îmrali jî, Çelîk got: "Ocalan akterekî girîng e. Dema ku gotûbêj ligel Ocalan heye di nava xelkê de hêviya çareseriyê geş dibe. Îro kirîzek li holê ye ku me hemûyan nerehet dike. Bo wêya BDPê daxwaz ji wezareta dadê kiriye, daku rê bide wan serdana Ocalan bikin. Li gor yasaya Tirkiyeyê parlamenter dikare serdana her mahkûmekî bike. Hêviyeke min ya mezin heye ku AKPê rê bide ew serdana Ocalan bikin."

## Amerîka: Divê PKKê bêyî şert çekan deyne

Berdevkê balyozxaneya Amerîka li Bexdayê derbarê êrîşên vê dawiyê yên Tirkiyeyê bo Rûdawê peyivî


Wêne: Rûdaw

**Rûdaw: Helwêsta Amerîka li himber êrîşên vê dawiyê yên Tirkiyeyê bo ser xaka Herêma Kurdistanê çî ye?**

**McClellan:** Em piştgiriya hevahengiya navbera Îraq û Tirkiyeyê de dikin di nehiştina PKKê de, ku dijminekî hevbeş yê Tirkiye, Îraq û Amerîka ye. Em wan dilgiraniyan jî, ku ji aliyê serkirdeyên Îraqî tên kirin, fêm dikin.

**Ji ber çi heya vêga Amerîka bêdeng bû li himber êrîşên Îran û Tirkiyeyê li ser Herêma Kurdistanê?**

Em ji cîranên Îraqê dixwazin ku rêza serweriya wê bigirin, bi rêya nehiştina grubên terorîstî de li deverên sînorî, ku dijminekî hevbeş in bo Îraq û Herêma Kurdistanê. Em çaverêya wêya ji desthilatdarên Îraq û Tirkiyeyê dikin ku bi hevre kar bikin bo sînordarkirina bandorên wan li ser xelkên deverên sînorî û berdewamiyê bidin hevahengî û berjewendiyên xwe yên hevbeş di tunekirina PKKê de.

**Gelo Amerîka dilgiran e li himber van êrîşan, eger berdewam bûn, gelo Amerîka ti helwêstekê digire?**

Em PKKê weke rêxistineke terorîstî şermezar dikin û daxwaz dikin ku kiryarên xwe yên terorê rawestînin û bêyî şert çekan deynin. Em daxwazê ji endamên din yên civaka navdewletî dikin ku bi ronî PKKê û kiryarên wê yên terorîstî şermezar bikin, herwiha em daxwaz ji wan dikin piştgiriya Îraq û Tirkiyeyê bikin di hewldanên wan de ji bo ku bi tevahî vê gefê bi awayekî seranserî û cihgir ji navbibin.

*Hevpeyvîn: Hawar Ebdulrezaq*

Sebahat Tuncel, li ser sînor li nêzîkî çiyayê Cûdî, bo Rûdawê axivî:

# Her şerek aştî li pey tê



Wêne: Rûdaw

Tuncel û bi sedan jinên kurd di cejna Remezanê de jî li Şirnexê man

**Sebahat Tuncel bal dikişîne ser gefên rayedarên hikûmeta AKPê û dibêje wê piştî cejna Remezanê hejmarek mezin ya siyasetmedarên kurd bên girtin**

» Ger Tirkiyê dixwaze PKK çekan deyne, pêwîst e derî li pêşberî veke.

» Cîhan li himber binpêkirinên Tirkiyê bêdeng e .

Ji bo bidawîanîna rewşa şer û operasyonên artêşa tirk, hejmareke parlamenterên BDPê, ligel dayikên aştiyê dest bi çalakiya "dayikên aştiyê" kirine. Di wê dema ku firoke çiyayên sînorî yên bakur û başûrê Kurdistanê bombebaran dikin, Sebahet Tuncel ku ji Stenbolê hatiye ligel dayikên aştiyê li Şirnexê, nêzîkî Gundikê Melê ku 30 km ji sînorê Herêma Kurdistanê dûr e û dikeve nêzîkî çiyayê Cûdî, ligel sedên dayikên aştiyê dikir hawar: "Aştî-Barîş."

**Rûdaw: Hûn li ser sînorê navdewletî yên Tirkiye û Herêma Kurdistanê, we xwe kiriye mertalên zindî bo girtina rê li ber şer. Hûn atmosfera siyasî ya niha çawa dixwînîn?**

**Sebahet Tuncel:** Ew xwepêşandan û çalakiyên ku em li vir bi rêbertiya dayikên aştiyê dikin bo bidawîanîna operasyonan e. Tirkiye şêwazekî bikar tîne ku 30 sal in bikar tîne û bêyî encam bû. Qonaxeke nû bi operasyonên esmanî dest pê kiriye, egereke zêde heye bi operasyonên bejayî dirêjiyê bidin vê qonaxê. Em dixwazin bala raya giştî ya cîhanê, Kurdistanê, Tirkiyeyê û Herêma Kurdistanê bikişînin ser van operasyonan. Cîhan li himber binpêkirinên Tirkiyeyê bêdeng e, Başûrê Kurdistanê li himber mirina xelkên sivîl bêdeng e, Amerîka û Ewropa bêdeng in, ev bêdengî bi awayekî ji awayan tê wateya razîbûna li himber operasyonên Trikiyeyê. Erkê birayên me yên Kurd e li başûr, erkê birêzan Talabanî û Barzanî ye ku dengê xwe bilind bikin, çimkî mesele ne tenê meseleya Kurdên Tirkiyeyê ye, lê meseleya hemû Kurdan e.

### Erdogan beriya hilbijartinê propagandaya tund kir

**Piştî hilbijartina 12ê hezîranê herkesî çaverêya atmosfereke siyasî ya nermtir dikir, lê ji nişkave şîdet zêdetir bû. Sedemê vê yekê çi ye?**

Bi rastî Serokwezî Erdogan di dema propogandeya hilbijartinê de, propogandeya vê qonaxê kir, çimkî wî digot kêşeya kurd li cem min bidawî hatiye. Bi vî rengî jî peyama hatina holê ya qonaxa îro dida. Qala yek al, yek nasname û yek mîllet kir, qala pêkhateya pirçandî ya Tirkiyeyê nekir. Ev jî dihate wateya ku siyaseta înkarkirinê berdewam dibe. Li himberî vê yekê gelê kurd li ser sindoqên hilbijartinê bersiva AKPê dan. Ji bilî hemû astengiyan 36 nûner şandin parlamenê ku AKPê yek ji wan ji xwe re bir. Erdogan fêm kir ku Kurd daxwaza mafên xwe dikin û lewra xwest vê qonaxê bîne pêş. Di heman demê de dezgeha serbazî li gor xwe dîzayn kir û polîs jî di operasyonên vê dawiyê de bikar anîn. Ev hewldana wî tenê li ser Kurdên Tirkiyê namîne, lê bi vê behaneyê êrîş dike ser Kurdên başûr jî.

**Ev çend roj in hûn li vê navçeyê ne, bo ragirtina operasyonan we ti peyamek wergirt?**

Mixabin, dixuye operasyon bidome û amadekarî jî wê yekê nîşan didin ku piştî cejnê şêwazê operasyonan berfirehtir dibin û egereke zêde heye piştî cejnê operasyoneke bejayî û girtina 1400 siyasetvanên kurd bê destpêkirin. Biryar e di çarçoveya dosya KCKê ku parlamenter û şaredar jî di nav de ne bên girtin.

### Makezagoneke nû dikare çareserî bûne

**Serokê Herêma Kurdistanê derbarê operasyonên Tirkiyê çend peyam dan, raya we li ser wan çi ye?**

Mixabin ev peyam dereng ketin, bi taybetî piştî wê yekê hatin ku çend kesên sivîl mirin. Lê dîsa jî bi baweriya min peyamên birêz Barzanî rê li pêşber reaksyona xelkê başûr vekir, nerazîbûn û xwepêşandan û meş li bajarên Herêma Kurdistanê vê rastiyê nîşan didin.

**Di vê qonaxê de çareserî çawa pêk tê?**

Bi bawetiya me ev mesele di çarçoveya makezagoneke nû de çareser dibe. Divê AKPê pêşî hebûna kêşeya kurd qebûl bike û pêwîst e biryara wê yekê bide ku ev kêşe bi şer û şîdetê çareser nabe. Pêwîst e ew gotûbêja ligel birêz Ocalan li Îmralî hatiye destpêkirin bo qonaxa îmzekirina peyman wegere. Lê belê AKP ne amade ye bo vê proseyê û careke din dixwaze xwe tecrûbe bike. Her şerek jî aştî li dûv wê tê.

**Bizava siyasî ya kurd di vê qonaxê de çi şaşîtiyek kiriye?**

Encama şaşîtiya siyasî li ser sindoqên dengdanê diyar dibe. Bizava kurd her hilbijartinekê li gor ya berî xwe dengên wê zêde dikin. Di heman demê de dibêjin eger BDPê boykota parlamen nekiriba û êrîşên PKKê şermezar bikira, rewş bi vî rengî aloz nedibû. Bi vî rengî hewl didin îradeya bizava siyasî ya kurd bişikînin. Herkes baş dizane tena neynika ku rastiya rûyê dewletê nîşan bide bizava kurd û PKKê ye.

**Eger operasyon bê rawestandin, hûnê herin parlamento?**

Bêguman wê demê ji nûve em ê van tiştan binirxînin, lê pêwîst e biryara boykotkirina parlamen zêde bi başî gotûbêj li ser bê kirin. Çimkî AKPê berî hilbijartinan dest bi êrîşên xwe kiribû. biryara me ya boykotê jî ev bû. Çimkî AKP bi dizîna parlamenteriya Hatîp Dîcle, bi azadnekirina 5 parlamenterên din û dadgeha tinazî ya dosya KCKê, hewl dide vîna siyasî ya kurdan têk bide.

*Hevpeyvîn: Hêmin Xoşnaw*

## Nerîn



### Operasyonên Artêşa Tirk

**Ahmet Dere**

Ji roja 16ê Tebaxê vir ve Artêşa Tirk li hemberê gerîllayên HPGê operasyonan pêk tîne. Wisa diyar e ku wê ev operasyon bi cureyên din jî bidomin.

Ji sala 1984ê vir ve PKK li hemberê Dewleta Tirk şer dike. Ji heman demê vir ve jî cur be cur hêzên dewletê li hemberê PKK û herwiha li hemberî gelê kurd şer dikin û qirêjian pêk tînin. Ev ne cara yekem e ku hêzên Dewleta Tirk dikevin axa Başûrê Kurdistanê, heya niha bi sedan, belkî bi hezaran caran ew çûne Başûr.

Tê bîra me hemuyan, di sala 2008ê de operasyoneke pir dorfireh, bi hêzên bejayî, li herêma Zapê pêk anîn. Lê belê encama wê operasyonê bû têkçûna Artêşa Tirk. Ji heman demê vir ve Dewleta Tirk bi tevlêbûna hêzên bejayî li Başûrê Kurdistanê operasyon pêk neaniye. Ji 16ê tebaxê vir ve tenê firokeyên şer tevlî operasyonê dibin, hê operasyona bejayî nehatiye dest pê kirin. Li gorî ku ez dibînim, rayedarên dewletê û hikûmetê bi tirs nêzîkê operasyona bejayî dibin, eger heman operasyon pêk were û carekê din, weke ya sala 2008ê, bê encam bimîne, wê demê ti rûmeta Artêşa Tirk namîne.

Qasê ku em dişopînin, di van rojan de rayedarên dewletê civîn li ser civînê li dar dixin, mijarê analîz dikin. Nepêkanîna operasyona bejayî jî, pêkanîna wê jî, ji bo Dewleta Tirk mijarekê pir girîng û xetere ye. Eger heman operasyon pêk neyê, wê derbarê Artêşa Tirk de bibe sedemê nirxandinên neyênî. Lewre, bi çi cureyê dibe bila bibe, ew di cewherê girtina biryarekê de xeteriyên mezin dibînin.

Li gorî ku ez dizanim, operasyona hewayî zêde zerarê nade hêzên gerîlla. Lê belê, eger heman operasyon dirêj bidome û di dawiya vê demê de jî operasyona bejayî pêk were, mirov dikare bêje ku wê hêzên gerîlla hin tengasiyan bijîn. Di vê rewşê de, wê were zanîn ku wê bi sedan leşkerên tirk werin kuştin, herweha wê hejmara wendayiyên gerîlla jî zêde bin.

Bi çi cureyê dibe bila bibe, encama operasyonê, an jî ya operasyonan, ji ti pirsgirêkê re nabe çareserî. Ji niha ve tê xuyan ku gelê kurd li dijî nêzîkatiya AKPê bê deng namîne. Eger rewş bi vî awayî bidome, nakokiyên di navbera gelê kurd û dewletê de kûrtir dibin. Bi vê nêzîkatiya siyasî, AKP wê nikaribe careke din ji Kurdan dengan bixwaze. Di nava AKPê de jî wê hin Kurd (nêzîkatiya Mehmet Mir Dengir Firat weke nimûne ye) bê deng nemînin.

Çi ji bo Kurdan û çi jî ji bo dewletê, bi rastî ev pêvajo pir girîng û xetere ye. Divê ji her du aliyan ve jî xwînsarî serdest be û çareserî bi rêbazên demokratîk were ceribandin. Di vî şerî de ne feydeya gelê kurd û ne jî ya gelê tirk tune.

# Partiyên kurd ji helwêsta Tirkiyeyê gûman dikin

**Besam Mistefa**

Heftiya borî di rojên 21 û 22 û 23ê tebaxê de, hevdem ligel rûxandina rêjîma Qedafî li Lîbiya, hejmareke kesayetiyên siyasî û hêzên opozisyona Sûriyê bi armanca dirustkirina serkirdayetiyeke yekgirtî bo bizava nerazîbûnan li Sûriyê, li bajarê Stenbolê civînek hat li dar xistin û tê de projeya damezirandina civateke niştimanî ya Sûriyê hat amadekirin. Lê wek dihat çaverêkirin hêzên siyasî yên kurd derbarê beşdarîkirinê di wê civînê de ne hevhelwêst bûn.

Endamê Serkirdayetiya Partiya Çep ya Kurd li Sûriyê Şelal Gedo, derbarê civîna Stenbolê got: "Li gor agahiyên min dawetname bo bizava kurd nehatibû rêkirin, ne bo nûnerên bizava kurd li derveyî welat û ne jî bo yên li hundir."

Gedo ragihand ku ew di wê baweriyê de ne her kongreyekî opozisyona Sûriyê li Tirkiyeyê bê sazkirin, ji aliyê gelê kurd bi hesasiyet tê temaşekirin, çimkî "Tirkiye dijayetiya gelê kurd dike li hemû parçeyên Kurdistanê û hemû dinyayê, ne ku tenê li Bakurê Kurdistanê."

Bi baweriya Şelal Gedo, acendayên Tirkiyeyê yên taybet hene li Sûriyê û armanca serekî ya Tirkiyeyê ji mêvandarîkirina van kongre û civînan ew e ku: "Dixwaze dubendiyê di navbera opozisyona Sûriyê de derxe. Tirkiye pir ditirse ku Sûriyeyeke demokratîk li ser sînorê xwe bibîne."

Hinek partî û aliyên kurdî berovajî kongre û civînên berê, vê carê tevî kongreya Stenbolê bûn.

Endamê Polîtburoya Partiya Yekîtiya Kurd li Sûriyê Ebdulbaqî Yûsiv ku nû ji wê civîna Stenbolê vegeriyaye, derbarê beşdarbûna wan got: "Di civîna pêkanîna civatê de biryarek hebû ku divabû helwêsteke diyarkirî hebe li himber rejîma Sûriyê, lewma aliyên ku hê jî hêviya wan bi gotûbêjan heye ligel rêjîmê nedibû di civîneke bi vî rengî de amade bibin."

Sekreterê Partiya Demokrat a Kurd li Sûriyê, Dr. Ebdulhekîm Beşar:

# Ji sedî 50 ji Kurdên Sûriyê ligel partiya me ne

» Eger partiyên kurdî daxwaz bikin 50 hezar Kurd li Qamişlo tên ser kolanan

Sekreterê Partiya Demokrat a Kurd li Sûriyê, Dr. Ebdulhekîm Beşar, di vê hevpeyvîna ligel Rûdawê de radigihîne ku ew bi 3 şertan amade ne hevkariyê ligel opozisyonê bikin. Ebdulhekîm Beşar herwiha dibêje ew çalakiyên ku vêga li bajarên Rojavayê Kurdistanê tên kirin, ne xwepêşandan in ku partiyan bangewaziya wan kiribin, ji ber ku ew dikarin dehên hezarên kesan bînin ser kolanê.

**Rûdaw: Piştî tundbûna daxuyaniyên serkirdeyên Rojavayî û daxwazkirina wan ji Beşar Esad ku îstîfa bike, hûn pêşeroja xwepêşandanan û rejîma Sûriyê çawa dibînin?**

**Ebdulhekîm Beşar:** Rejîma Sûriyê bi daxuyanî û gotinan naçe, bi gotinên Ewropa û Rojava jî naçe, ji ber ku biryara xwe daye. Zextên navdewletî û dorpêçkirin pirsgirêkan jê re dirust dikin, lê wê narûxînin. Li Îraqê jî me dît dorpêça 23 salî nekarî rêjîma Saddam birûxîne, heya ku bi hêz êrîş li ser nehat kirin. Rewşa Sûriyê zêde aloz e, dibe ku ev daxuyanî xwepêşandanan gurr bikin, lê meselê yekalî nakin.

**Du heftiyên borî xwepêşandan kêm bûn, ew daxuyaniyên serkirdeyên Rojava xwepêşandanan zêdetir nakin?**

Belê zêdetir dibin, lê belê rejîm jî zêdetir xwepêşanderan dikuje. Êdî ne rejîm dev ji kuştinê berdide û ne jî şoreş vedigere paş. Ne gel vedigere paş 15ê Adarê û ne rejîm jî Sûriyeke berî 15ê Adarê dibîne. Lê bizava siyasî li Sûriyê bê bername ye û ne hevgirtî ye, ew civînên ku li derve jî ji aliyê kesayetî û hinek aliyên opozisyona Sûriyê tên kirin, zêdetir medyatîk in û hîç bandorekê li ser erdê dirust nakin.

**Rejîma Esad li Sûriyê xilas bûye, yan demeke dirêj dikare li ber xwe bide?**

Demeke dirêj bergiriyê dike. Dibe ku yek ji van du tiştan biqewimin, yekem: şerekî navxweyî li Sûriyê derkeve. Duyem: Dibe ku şerekî navçeyî li navçeyê derkeve, ji ber ku Îran û Hîzbûllah berevaniya rêjîma Sûriyê dikin. Sûriyê ne dewleteke bi tenê ye, lê beşeke ji sazûmanekê ku ji Îran, Hîzbûllah û Hamasê pêk hatiye. Hêjî ew bi tevahî di şer de derneketine, guherandina rêjîma Sûriyê, guherîneke mezin li deverê li pey xwe tîne.

**Hûn bêdengiya Herêma Kurdistanê derbarê bûyerên Sûriyê çawa şîrove dikin?**

Em wisa dibînin pêgeha erdnîgarî ya Sûriyê pir nazik e, dibe ku her maytêkirinek bibe hoyê dirustbûna şerekî navçeyî. Em weke Kurd, pêwîst nake bikevin ti helwesteke, heya ku ronî nebe berê van bûyeran berbi kuderê diçe. Gava ronî bû rêjîma niha ya Sûriyê bi tevahî dirûxe û çi rêjîmek dikeve dewsa wê, wê demê divê em bernameya karê xwe bilivînin. Ji ber rêjîmeke totalîter ku Îxwan Musilmîn (Birayên Misilman) pêşrewtiya wê bike, ne cihê piştîvanîkirinê ye. Opozisyona Sûriyê heya vêga li ti mafekî Kurdan mikur nayê, dibêjin piştî guherandina rejîmê qala mafên Kurdan dikin. Lê em naxwazin tecrûbeya şehîd Qasimlo û rêjîma Xumeynî, yan tecrûbeya Kurdan ligel rêjîma Ataturk dubare bikin. Heya ku opozisyona Sûriyê hebûn û mafên Kurdan li ser xaka xwe, di çarçoveya Sûriyê de, nas neke, em nizanin pêşeroja Sûriyê berbi kuderê diçe. Eger ew mikur bên, wê demê em hemû diherikin ser kolanan ji bo guherînê. Heya ku ev pêk neyê em xwe naxin nava şerekî ku em nizanin berbi kuderê diçe.

**Hûn weke Partiya Demokrat a Kurd li Sûriyê beşdar in di xwepêşandanên ku li navçeyên kurdî tên kirin yan na?**

Em weke partiyên siyasî yên kurd li Sûriyê, me biryareke siyasî da ku xwîn di navbera me û rejîmê de nerije. Me rê da ciwanan ku herin ser kolanan û daxwaza azadî û demokrasî û mafên Kurdan bikin. Vêca me biryar da ku em dest bi sazkirina semîneran bikin, vêga jî em li ser vêya berdewam in.



Wêne: Rûdaw

**Eger em bikarin navçeyên xwe rizgar bikin jî em nikarin wan biparêzin**

**Kongreyên Stenbol û Antalyayê medyatîk bûn û ti bandora wan li Sûriyê nebû**

**Hûn wisa nabînin ku derneketina we veqetînekê di navbera partiyên kurdî û ciwanan de dirust dike?**

Na. Bajarekî mîna Qamişlo ku 400 hezar Kurd lê dijîn, em dikarin 50 hezar kesan derxin ser kolanan, derketina 200-300 kesan bo xwepêşandanekê ne derketine. Gelê kurd ligel bizava siyasî ye. Weke mînak ji sedî 50 ji gelê kurd li Sûriyê ligel partiya me ye, yên din jî ligel partî û rêxistinên din e. Eger em biryar bidin, em dikarin hezarên kesan bînin ser kolanan.

**Serokê Partiya Wîfaqa Kurd li Sûriyê, Fewzî Şingalî, di hevpeyvîneke ligel Rûdawê de got 'eger em weke gelê kurd û partiyên kurdî bixwazin, em dikarin di hundirê 24 saetan de Rojavayê Kurdistanê rizgar bikin, ji ber Artêşa Sûriyê vêga lê nemaye'. Gelo hûn dikarin vê yekê bikin?**

Na, ne wisa ye. Ew agahî şaş in, vêga jî artêş û sîxurî û çekên giran ên dewletê li navçeyên kurdî hene. Îcar eger me karî rizgar jî bikin, çawa dikarin li jêr bombebarana top û firokeyên Sûriyê gelê xwe biparêzin. Muxamere bi Kurd û doza kurd nayê kirin. Çekdarên me jî hebûn, me bi camêrî şer kir bo cihên din, lê belê siyaseteke me ya rast nebû, me sûd wernegirt. Niha jî pêwîst nake em muxamere bi jiyana gelê xwe bikin.

**Hûn weke Civata Siyasî ya Partiyên Kurdî yên Sûriyê, ku ji 11 partiyan pêk hatine, niyeta we ya çi gavekê heye ji bo formulekirina daxwazên gelê kurd li Sûriyê, ku opozisyonê neçar bikin berî rûxandina rejîma Esad îmze bike?**

Em niha amadekariyên kongreyeke neteweyî ya kurdî li Sûriyê dikin, dibe ku di hundirê van herdu heftiyan de li dar bixin. Partî, ciwan, jin û kesayetiyên rewşenbîrî tê de beşdar dibin, daku em nexşeya rêya bê ya siyaseta xwe danin. Em weke partiyên kurd li Sûriyê, sê bingeh û şertên me hene ji bo hevkarîkirinê ligel opozisyona sûrî: navê Komara Erebî ya Sûriyê bibe Komara Sûriyê; bi nivîskî qebûl bikin ku di destûrê bê de mafên neteweyî yên gelê kurd di çarçoveya Sûriyê de bên naskiri; welatê Sûriyê ne beşek e ji Welatê Erebî. Em zêde pêdagiriyê dikin ku ev hersê xal bên qebûlkirin.

**Gelo hûn û opozisyona Sûriyê ti pêwendiyê bi hevdu re dikin?**

Em weke partî endamê Danezana Şamê ne, ligel çend partî û kesayetiyên opozisyonê yên din. Me ev daxwazên xwe dane wan jî, Danezana Şamê jî kongre li dar dixe û gotûbêjan li ser van hersê xalan jî dikin û bawer dikim wan qebûl dikin. Danezana Şamê ne wek aliyên din yên opozisyonê ye, xwedî rol û kartêkirin e li ser erdê.

**Tevî ku nûnerên partiyên kurdî ji kongreya Antalyayê vekişiyan, lê Selah Bedredîn û çend Kurdên din venekişiyan. Hûn vê yekê çawa şîrove dikin?**

Kongreyên ku li derve tên girêdan bêtir tiştên medyatîk in û li Sûriyê cihê xwe nagirin. Eger aliyên serekî yên opozisyonê li hev nekin, hinek rewşenbîr û ciwan nikarin bi wan kongreyên li derve tiştekî bibandor li ser xakê li Sûriyê bikin. Eger ne wiha ye, kanî bandor û karê piştî kongreyên Stenbolê û Antalyayê?

***3 daxwazên Partiya Demokrata Kurd li Sûriyê ji opozisyonê:***

- *Navê Sûriyê bike Komara Sûriyê*
- *Bi nivîskî li mafên Kurdan mikur bên*
- *Qebûl bikin ku Sûriyê ne beşek ji Welatê erebî ye*

# Li Almanya dibistanên kurdî jî hene





Wêne: Rûdaw

**Hannover (Rûdaw) -** Li bajarê Almanya Hannoverê ev du sal û nîv in ku bi mebesta hînkirina kurdî ji aliyê çendîn mamostayên kurd ve dibistanek hatiye vekirin. Yek ji van mamosteyan û sazûmankara vê projeyê Viyan Merwanî bo Rûdawê ragihand ku ji bilî zarokên kurd çendîn zarokên alman jî li cem wan fêrî kurdî dibin.

Dibistana "Xwendegeha Kanî" di 19ê nîsana 2009e de ji aliyê çend mamosteyên kurd ve li Hannoverê hatiye vekirin û heta îro rojên yekşemê dersên zimanê kurdî û muzîka kurdî didin zarokên temenê wan navbera 6 û 14 salan de ne. Mamoste Viyan Merwanî ku bi xwe rêveberiya vê projeyê dike daxuyand li "Xwendegeha Kanî" 5 mamoste hene û bê ûhemû bê pere kar dikin û hemû mesrefên dibistanê û yên zarokan ev mamoste didin pişta xwe. Mamosta Viyan got, "Mamosteyên me bi dilsozî kar dikin û ji bo kesên beşdar jî dibistan belaş e."

Li gor agahiyên ku Mamosta Viyan Merwanî danê Rûdawê beriya ku dibistanên fermî bên girtin, ango heta dawiya meha gulanê di çar sinifan de bi giştî 38 zarok li Xwendegeha Kanî perwerde didîtin. Mamosta Viyan Merwanî herwiha got, "Di nava van şagirtan de xortekî alman yê 22 salî jî hebû û xwe fêrî kurd1i kir, herwiha zarokek ji diya alman û bavê kurd jî di nava wan de heye."

Birêvebirên Xwendegeha Kaniyê Mamosta Viyan ji dayîk û bavên kurd ên vî bajarî daxwaz dikin ku zarokên xwe ji bo hînbûna zimanê kurdî ya bêheq bişînin vê dibistanê.

Dibistana ku di avahiya Kindergartenê de li navnîşana Charlotten str.33, li Hanoover kursên kurdî dide, hemû rojên yekşeman di navbera saet 13 û 17:00 de xebata xwe didomîne.

Ji bo Parlemena Berlînê jineke kurd berendam e:

# "Eger em bibin hikûmet wê jiyan li Berlînê baştir bibe"



Wêne: Rûdaw

Gulaysan Karaaslan di hilbijartina parêzgeha berlînê de di lîsteya Die Linke de berendama parlemenê ye

**Alan Ken** Berlîn

Li Almanya, li parêzgeha Berlînê di 18ê îlonê de hilbijartinên herêmî tên kirin û çend siyasetmedarên kurd jî berendamên Parlemena Berlînê ne. Yek jî ji wan Gulaysan Karaaslan e ku di lîsteya partiya Die Linke de ji navçeya Neukollnê dikeve hilbijartinan.

Siyasetmedar Gulaysan Karaaslan dixwaze li parlamena parêzgeha Berlînê siyasetê bike. Ji bo vê jî li Neuköllnê xebatên xwe yên bo hilbijartina 18 îlonê didomine. Karaaslan di ciwantiya xwe de ji bajarê Mûşê hatiye Almanya û bi malbata xwe re li Berlînê dijî. Ew di sala 1999ê bûye endama PDS û ketiye nava siyasetê. Piştî ku PDS navê xwe guhert û bû Die Linkê (Partiya Çep) Karaaslan jî xwebatên xwe li navçeya Neukollnê berdewam kir. Karaaslan, ev 7 sal in endama şaredariya meclisa Neukollnê ye, lê îcar dixwaze here Parlamena Berlînê. Ew niha bi komek hevalên xwe re her roj kampanyaya xebata hilbijartinê dimeşîne.

**'Bila ciwan tevlî partiyên alman bibin'**

Karaaslan, derbarê hilbijartinan de bo Rûdawê axivî û weha got; "Bi sed hezaran Kurd li Almanya dijîn û hejmarek mezin li vir hatiye dinyayê û hemwelatiyên Almanya ne. Lê mixabin di nava siyaseta vî welatî de gelek kêm Kurd hene. Mînak di Parlamena Fedaral ya Almanya de ti Kurdek tune, gelo ji bo çi? Divê sazî û rêxistinên me vê yekê baş fikirin." Karaaslan, dixwaze Kurd di nava siyaseta Almanya de bibin xwediyê hêz û biryarê, Lewma bang li ciwanan dike û dibêje: "Bila cîwan bikevin nava siyasetê. Kîjan partî dibe bila bibe. Li gor fikir û ramanên xwe bila bikevin nav siyasetê, bo gelê xwe lobî bikin. Eger wisa berdawem bike ev lobiya heyî jî namîne. Lewma divê sazî û rêxistinên kurdan bicivin û li ser van mesaleyan serê xwe biêşînin." Li gor agahiyên ku Karaaslan dibe me, li Neuköllnê ji 162 netawan mirov dijîn. Derbarê siyaseta partiya xwe bo gelên penaber û biyanî Karaaslan got, ew li dijî bê edaletiyê ne. Karaaslan wiha axivî: "Divê xizmeta av û gîhanî veguhestinê hertim di bin kontrola dewlet de be. Eger van karan bidin şîrketên teybet jiyana xelkê wê zêdetir xirab bibe. Em li dijî birîna mafên sosyalî ne. Wger em bi serê xwe bibin hukûmet wê bi her awayê jiyana berlîniyan baştir bibe."


Wêne: Rûdaw

## Li Berlînê êrişa artêşa tirk hat protesto kirin

**Berlîn (Rûdaw) -** Li paytexta Almanya Berlînê bi meşek girseyî êrîşa artêşa tirk ya li ser başûrê Kurdistanê hat şermezarkirin. Di meşê de çalakvanên kurd, bi pankart û sloga-Serokwezîrê Tirkiyeyê Erdogan protesto kirin.

Ev demek e balafirên şer yên artêşa tirk li dijî gerîllayên HPGê gund û çiyayên başûrê Kurdistanê bombebaran dikin. Di encama van êrîşan de ji malbetek 7 sivîl jiyana xwe ji dest dan. Ev êrîşa dawî di nava Kurdan de nerazîbûniyek derxist holê û gelek cihên ku Kurd lê dijîn çalakî hatin li dar xistin. Dawiya heftiya borî li Berlînê jî meşek bi vî rengî hat li darxistin. Meşa ku bi sedan kes tevlî bûn ji aliyê rêxistina ciwanan ya bajêr ve hat organîzekirin. Meş ji navçeya Weddingê dest pê kir û li Aleksanderplatzê bi dawî bû. Di meşê de pankartên wek "Bila şerê li Kurdistanê bi dawî be" û "Do Hitler îro jî Erdogan" hatin daliqandin û weneyên ew 7 kesên jiyana xwe ji dest dabûn hatin rakirin. Di meşê de Tirkiye hat şermezarkirin û hat xwestin ku operasyonên li dijî gerîlla bi dawî bibin. Komên çep yên alman û tirk jî piştgirî dan meşê û bi Kurdan re meşiyan.

# Jinê lê îxanet kir, dadgehê jî ceza dayê

**Hollanda (Rûdaw) -** Dadwerekî hollandî 50 demjimêr xebat, hefteyek zîndan û 350 euro jî pere wek ceza da kurdekî rûniştvanê bajarê Leeuwarden. Sedemê ku ev zilamê kurd ji dadgehê ceza dîstîne ew e ku beriya demekê gûman pê re çêdibe ku peywendiya hevjîna wî ligel zilamekî din heye û ew zilam jî ji hevjina xwe re nameyek dişeyîne ku tê de nivîsandiye, "Tu dizanî ez ê çi bikim."

Hefta borî roja 25ê tebaxê bajarê Leeuwarden dadgehkirina jin û zilamê kurd encam da. Li gor agahiyên ku Rûdawê bi dest xistine jina kurd gilî li hevjînê xwe kiriye û ji dadwer re gotiye ku di kultura me de ev gotinên wek "Tu dizanî ez ê çi bikim" tên wê wateyê ku "ez ê te bikujim." Dadwer jî ji vî zilamê kurd re dipirse ka mebesta wî di nameyê de çi ye ku ji hevjîna xwe re nivîsandiye. Zilamê kurd jî di bersiva xwe de gotiye: "Mebesta min di vê nameyê de ew e ku min xwestiya jê re bêjim ez te ber didim, ne ku dikujim." Li ser axaftina zilamê kurd, dadwerê hollandî Îvone Hawzîng jî gotiye, "Li cem me ron bûye ku ji bo zîndanîkirina demdirêj ya vî zilamî ti sedemek û metirsiyek tune, lê gelek caran li jin û keça xwe xistiye, lewma ez cezayê 50 demjimêr xebat bo dewletê, hefteyek zîndanîkirin û 350 euro pere ddimê."

Derket holê ku di dadgehkirinê de zilamê kurd ji ber ku hevjîna wî lê îxanet kiriye telaq dayê ku ew hevjîna xwe berdaye.



# Rêwîtiya jin û mêrekî kurd li kampê bi dawî bû



**Rosenheim (Rûdaw) -** Li ser otorêya 8, li nêzîkî bajarê başûrê Almanya Rosenheimê, xewn û rêwîtiya jin û mêrekî kurd yên ji Bakurê Kurdiatanê bi dawî hat.

Li gor daxuyaniyeke polîsên bajarê Rosenheimê, 29ê tebaxê polîsên sînor erebeyek ji Awisturyayê li ser otorêya 8 berbi Almanya rawestandine û tenê şoferê erebeyê xwedî belgeyên fermî bûye, lê jin û merê din yên di erebeyê de ti belge û nasname ligel wan tune bûye. Li gor polîsan, jin û mêrê 30 salî Kurd bûne û li gor gotina wan ew li Tirkiyeyê di bin zextê de bûne û ji ber wê yekê wan Tirkiye terikandine. Li gor daxuyaniya herdu kesên binçavkirî, wan ji bo rêwîtiya xwe ya ji Tirkiyeyê heta Almanyayê çend hezar euro dane qaçaxçiyên mirovan. Li gor encamên lêkolînên polîsan yên destpêkê, rêwîtiya herdu Kurdan ji Tirkiyeyê heta Awisturyayê di kamyonekê de pêk hatiye û herdu kes li bajarê Awisturya Grazê ketine erebeya şoferê ji Tirkiyeyê û ji bo rêwîtiya ji Grazê heta Almanyayê wan dîsa 500 Euro heqrê dane.

Bi sedema derbaskirina sînor ya neqanûnî, derbarê herdu kesan de doz hate vekirin û herdu kes jî ji bo kampek penaberan hatin şandin. Derbarê kesê şofer de jî, bi sedema qaçaxtiya mirovan, lêkolîn hatin dest pê kirin.

Hefteya borî jî dîsa Kurdek li ser rêya Awisturya û Almanyayê, li heman herêmê, hatibû binçavkirin. Kesê Kurd yê 25 salî ku xwestibû bi qaçaxî bi rêya trênê derbasî Almanyayê bibe, hatibû girtin û ew jî ji bo lêkolînan şandibûn kampek penaberan li bajarê Munchenê.

# “Paranoya ket nava futbola Tirkiyeyê“

- Şampiyona par Fenerbahçe ji ber gendeliyê tevlî Lîga Şampiyonan nabe
- Fenerbahçe yek bi yek leystikvanên xwe winda dike
- Orhan Can: Wê herkes ji her tîmê gûman bike, wê bêjin, “Gendelî kiriye”

**Koln (Rûdaw) -** Li Tirkiyeyê di meha tîrmehê de di nava civaka sporê, nemaze di futbolê de erdhêjeke mezin derket û tîma ku temenê wê sed salan derbasbûye û heta niha gelek caran bûye şampiyon û herwiha bûye şampiyona sezona dawî Fenerbahçe rastî operasyoneke polîsî hat û serokê wê û gelek rêveber û futbolvanên wê bi mebesta "gendeliyê kirine" hatin binçavkirin. Serokê Klûbê Aziz Yildirim hê di girtîgehê de ye û serokê duyemîn Nihat Ozdemîr jî roja 25ê tebaxê îstîfa kir û klûba ku şampiyonî û mafê beşdariya Lîga Şampiyonan ya UEFAyê ji destê wê çû, ji Federasyona Futbolê ya Tirkiyeyê TFFê daxwaz kir ku wê daxîne lîgeke jêr. Di vê navberê de leystikvanê Fenerbahçeyê Andre Santos bi Arsenal re, Diego Alfredo Lugano bi Paris S.Germain re peyman îmze kirin û çûn.

Doza gendeliya futbolê ya taybet li hemberê rêveberiya Fenerbahçeyê û lêkolîna giştî ya di nava gelek klûban de du meh li dû xwe hîştin. Di vê navberê de TFFê jiber berdewamiya dozê biryar girt ku sezona 2011/2012 mehekî dereng ango di destpêka îlonê de bê destpêkirin. Eger di vê heftê de bûyerek girîng rû nede wê di 3ê îlonê de sezona futbolê li Tirkiyeyê dest pê bike.

### “Wê gûman bikeve nava herkesî“

Nivîskarê sporê yê Hurriyetê Orhan Can jî di quncikê xwe yê 28ê tebaxê de bal kişand ser kêşeya gendeliyê di futbolê Tirkiyeyê de û got niha her tişt tevlî hev bûye û ne diyar e kî pak ğ, kî gendeliyê dike. Can di wê bawerîyê de ye ku wê di futbolê û nava futbolhezkeran de paranoyaya futbolê derkeve û wiha dom kir: “Wê herkes ji her kesê gûman bike. Jiber ku pirsa 'Gelo?' ketiye mêjiyê herkesî. Mînak dema ku futbolvan xwêdan bide û nikaribe bazde, nikaribe lingê xwe li gokê bixe, wê bêjin, 'Pere xwariye, xwe firotiye'. Jixwe li vî welatî îftîra pir zû tên gotin. Ez qet naxwazim ew qelevanên ku ji ber kêmasiyeke biçûk golê bixwin, bifikirin. Futbolvanên herî navdar jî carna pir kêmasiyên mezin dikin, jixwe futbol leystikek wisa ye. Egerê wê ji yên setrancê zêde ne."




Can destnîşan dike ku wê ji niha û şûnde li Tirkiyeyê di vcvaka futbolhezkeran de hertim li lehengên futbolê tomet bên kirin. Can wiha didome: "Wê ne tenê dijberên tîmekê, herwiha alîgirên wê tîmê jî tometan bikin. Wê bêjin, 'Gendelî kiriye, pere xwariye'. Wê ti kes nikaribe vê rezaletiyê ji holê rabike. Ev destpêka rûxandina civakê ye; rûxandine exlaqê ye."

Çendîn rêveberên Klûba Fenerbahçeya ku navê wê bûn du meh bûye sembola gendeliyê û serokê wê di girtîgehê de, cihgirê serokê wê jî îstîfa kir û ji ber biryara UEFAyê rojên krîtîk derbas dike, ragihandin ku ew di 18ê îlonê de kongreya awarte li dar dixin û di vê kongreyê de rêveberî û serokê nû nayên hilbijartin, tenê dixwazin ji bo aloziya heyî nexşerêyeke diyar bikin û bigihîn îradeyeke ku karibe biryaran bide.

Federasyonê Futbolê ya Tirkiyeyê jî ku ev bû du meh di navbera zextên UEFA, dad û rêveberiya tîman û çapemeniyê de mayê bi mebeste ku rê li pêşiya gendeliya futbolê bike sîsteme nû danî ji bo şampiyontiyê. Serokê TFFê Mehmet Ali Aydinlar hefta borî ragihand ku ji vê sezonê û şûnde ew sîstema wek di nava raya giştî de "sîstema Belçîkayê" tê binavkirin, ango ji bo diyarkirina şampiyonê lîgê di navbera her çar tîmên herê serkeftî de sîstema Play-Offê bê danîn. Her çar tîmên serkeftî piştî ku lîg bi dawî bibe wê di navbera xwe de her yek bi yeka din re du maçan bike û heta ku ber bi fînanlê herin û tîma ku di fînalê de bi serkefe bibe şampiyon û rasterast tevlî Lîga Şampiyonan bibe.

## Wê 3 pûanan kî bistîne?

**Swêd (Rûdaw) -** Tîma futbolê ya Kurdên Swêdê Dalkurd hefta borî li deplasmanê 3 pûan bidest xistin û vegeriya malê. Dalkurd vê heftê jî bi tîma herî bihêz Umea re li mala xwe dileyîze.

Dalkurdê piştî têkçûn û wekheviyekî hefta borî serkeftinek bi dest xst û pûanê xwe ji 29ê birin 32yê. Di maça ku şemiya borî hat leyîstin de, 7 Dalkurd 4:3 Vasalund têkbir. Malpera Dalkurdê www.dalkurd.se ragihand ku piştî serkeftina deplasmanê moralê wan bilind bûye û ev jî wê bandorê di maça ligel Umea de bike. Umea ji destpêka lîgê heta niha serekê lîgê ye û 36 pûanên wê hene. Maç li Dalarnayê di 3ê îlonê tê leyîstin.

# Di cejna Remezanê de çaverêyî Rengale nekin



Wêne: Rûdaw

**Hewlêr (Rûdaw) -** Serokê Grûpa Rengale hunermend Mahir Hesen bo Rûdawê got "berhema me ya ku me her sal di cejna Remezanê de dest pê dikir, îsal di jivana xwe de nayê pêşkêşkirin, ji ber ku me ji bo meha Remezanê çend dramayên kurt berhemanîn."

Grûpa Hunerî ya Rengale her sal berhemên wan yên şanoyê hebûn û wan heta niha 10 berhemên şanoyên nîşandane. Mahir Hesen got "tevî ku me nekarî em îsal di dema diyarkirî de berhemekê pêşkêş bikin, lê ev nayê wateya ku berhemê me tune, lê du berhemên şanoyê li ber destê me hene. Yekê ji wan (Serdan), em ê piştî cejnê di dawiya meha Îlonê de nîşan bidin. Teksta vê lîstikê komîk û rexnehilgir e. Berhemê duyemîn jî ji teksteke nivîskar Dr. Şêrko Ebdulla hatiye wergirtin û wê di cejna Qurbanê de bi navê Doxtor Bîrdoz bê nîşandan."

Hunermend Mahir Hesen derbarê berhemê nû yê drama televizyonê got "em ev demeke bi amadekariya fîlmekî re mijûl in, nave wî Xurşê Kor e ku ji aliyê Karox û Teha tê derhênan, ez bi xwe jî senaryoya wê dinivîsim lê min fikra wê ji pirtûka Riştey Mirwarî girtiye." Wî herwiha amaje bi wê yekê jî da ku ev berhem ne komîk e mîna berhemên wan ên din, "lê berhemeke ciddi û super e û ez hêvîdar im di dahatiyekî nêzîk de karê berhemanînê temam bibe."

Nizamettin Ariç bang li hunermendên kurd dike

# Piştgiriya Rojavayê Kurdistanê bikin!



Wêne: Rûdaw

**Koln (Rûdaw) -** "Helwesta siyaseta Kurdên Kurdistana Tirkiyê û Îraqê li hemberî rewşa birayên me ên li Sûriyê gelek tevlîhev û bi xembar e û ji bo doza me ya netewî jî bifikar e." Bi van fikaran hunermendê kurd yê naskirî Nizamettin Ariç di daxuyaniyekê de, ku ji hunermendên kurd re hate şandin, balê dikşîne ser rewşa Kurdên Rojavayê Kurdistanê û bangî hunermendên kurd dike ku bi her awayî piştgiriya Kurdên Rojavayê Kurdistanê bikin.

Nizamettin Ariçê ku heta niha gelek albumen muzîkê derxistine û herwiha ji fîlmê "Klamek ji bo Beko" tê naskirin, balê dikşînê ser fedekariya Kurdên Rojavayê Kurdistanê di hemû şoreşên beşên din yên welat de û doza vê fedekarî û piştgiriyê îro ji Kurdên beşên din yên Kurdistanê jî dike, di rojekê de ku Rojavayê Kurdistanê bi vê piştgiriyê muhtac e. Ariç wiha behsa fedekariya Kurdên Rojava dike: "Gelê me yê li Kurdistana Sûriyê ji bo têkoşîna me her dem alîkariyên gelek xurt pêşkeş kiriye. Dema ez jî ji welatê xwe hatim bi dûrxistin, min xwe spart Kurdistana Sûriyê. Min bi xwe jî dît ku Kurdên Sûriyê alîkariya hemû Kurdên ji parçeyên Kurdistanê dikirin, nedixwarin bi me didan xwarinê û bi dil û can beşdarî doza me ya netewî dibûn. Lê belê em nikarin bejin ku Kurdên ji perçeyên din jî îro, di vê rewşa wan a teng û dijwar de, bi heman hesasiyetê alîkariya Kurdistana Sûriyê dikin."

Nizamettin Ariç banga hevxebatê li hemû hunermendên kurd dike û serketin û têkçûna Kurdên Rojavayê Kurdistanê wekî ya hemû Kurdan dibîne û wiha dibeje: "Gelek pêwîst e ku em hunermendên kurd, bêyî ku li benda helwêsta siyasetmedaran bimînin, bi lez çalakiyan amade bikin. Divê Kurdistana Sûriyê biserkeve, ji bo vê jî pêwîst e ku em bi hevre kar û xebatan bikin. Têkçûneka Kurdistana Sûriyê wê bibe têkçûna me hemû- yan!"Banga hunermend Nizamettin Ariç wiha bi dawî dibe: "Ez bang li hemû xuşk û birayên xwe yên hunermend dikim ku em bi tevayî bi projeyên hunerî yên Kurdistanî û azad dengê xwe bilind bikin."

***Bi rêya e-mail a Rudawê (info@rudaw.eu) hunermend dikarin bi Nizamettin Ariç re bikevin têkiliyê.***

## Ezîz Weysî bi stîla hindî tê

**Hewlêr (Rûdaw) -** Ezîz Weysî piştî ku albuma wî ya nû, ku ji 9 stranan pêk tê, temam bû, niha li Hindistanê mijûlê çêkirina klîbekê ye. Ezîz Weysî bo Rûdaw got "ez niha li Hindistanê me bo berhemanîna stranekê ku karê muzîka wê bi stîla hindî hatiye çêkirin." Ezîz Weysî herwiha got "ez hêvîdarim ku ev klîb ji bo hemû Kurdan bibe ken û bibe xizmet bo hunera kurdî."





Wêne: Rûdaw

Cîgirê Serokê Partiya Demokrat a Kurdistanê (PDK) Nêçîrvan Barzanî ragihand ku ji bo bidawîanîna li bombebaran û pirsgirêkên ser sînor, ew bi tevgereke 'dîplomatîk a berfireh' û rûniştina ligel 'hemû aliyan' ve mijûl in, da ku Hêza Pêşmergeyên Kurdistanê li ser sînorên Herêma Kurdistanê yên ligel Îran û Tirkiyeyê bên bicîh kirin. Barzanî derbarê şerê PKK û Tirkiyeyê jî helwesta xwe diyar dike û ji bo çareserkirina pirsa Kurd pêwîstiya rûniştina li ser maseya gotûbêjan tercîh dike.

**Rûdaw: Hûn niha ji serdana Îranê vegeriyane, we derbarê topbarana navçeyên sînor de behsa çi kir û hûn li ser çi li hev hatin?**

**Nêçîrvan Barzanî:** Axaftin û behsên me ji wê yekê zêdetir bûn. Serdana me bo Îranê li ser raspardina birêz Serokê Herêma Kurdistanê û haydarbûna Serokê Hikûmetê bû, xala serekî ya programa serdana me jî ew alozî û tevliheviyên ku li ser sînorên Herêma Kurdistanê de hene, bû. Me li wir berpirsyarên mezin ên Komara Îslamî ya Îranê dîtin, yên siyasî, dîplomasî û leşkerî. Polîtîkaya Herêma Kurdistanê her ji roja yekemîn ew bû ku naxwaze bibe sedema alozî û desttêwerdana di karûbarên ti welatekî cîran de, lê dixwaze bibe cîranekî baş digel wan welatan li ser bingeha rêzgirtina dualî. Mixabin li sînorên Herêma Kurdistanê, çi digel Îranê û çi digel Tirkiyê, pirsgirêka PJAK û PKKê heye. Bêguman ew herdu alî ji hevdu ne cuda ne, ji ber ku ew yek sistem û yek hêz in, ne cuda ne. Hebûna wan li navçeyên çiyayî yên ser sînorê Herêma Kurdistanê û heta astekî li gundên ser sînor, bûye sedem û hênceta ku pirsgirêk bikeve navbera welatên cîran û Herêma Kurdistanê. Niha dema em behsa Îranê dikin, ez dibêjim mixabin PJAK û PKK bi şerên xwe qet berjewendiyên Herêma Kurdistanê li ber çav nagirin, ew hertim hincetan didin destê wan welatan ku êrişê nav xaka Herêma Kurdistanê bikin. Em niha hikûmet in, ne hêzek in li çiya, em ji parastina jiyan û jiyara xelkê Herêma Kurdistanê berpirsyar in. Nabe xelkê navçeyên sînor bi wan êrişên PJAK û PKKê bikevin ber êrişên Îran û Tirkiyê, herwiha li gor yasayên navnetewî jî nabe tu rê bidî ku axa te ji aliyê hêzekê ve bê bikaranîn bo êrîşkirina ser xaka cîranê te û dubare vegere nava axa te. Tiştê ku niha PJAK dike bi vî awayî ye. PJAK ji bingehên xwe yên nav xaka Herêma Kurdistanê hêzê dişîne nav axa Îranê, kemînan dideyne, pasdarên Îranê dikuje û vedigere. Ev li gor prensîbên navnetewî nayê qebûl kirin, herwiha Herêma Kurdistanê çênabe vê qebûl bike. Ev bûye pirsgirêk di navbera Îran û Herêma Kurdistanê de.

Di vê serdana min a bo Îranê de, Îraniyan ji me re gotin ew ne dijî Herêma Kurdistanê û desthilata Herêma Kurdistanê ne, lê daxwazeke gelekî eşkere ji me kirin, gotin em dixwazin desthilata Hikûmeta Herêma Kurdistanê li ser sînoran hebe û dixwazin li kêleka hikûmet û hêzên Herêma Kurdistanê bin, ne mimkûn e li sînorên Herêma Kurdistanê bicih bibe, kontrola wê derê di destê wan de be û car car êrişên çekdarî ji nav axa me pêk bînin. Min berê gotiye û ez niha jî dubare dikim, PJAK divê dest ji xebata çekdarî berde, tiştê ku PJAK niha dike zirarmendê sereke û bi pileya yekemîn xelkê Kurdistana Îranê ye, piştî wan jî xelkê Kurdistana Îraqê. Ji ber tevgera wan tiştekî ji hevkêşeyan naguhere ji bilî pêkanîna guşar û nexweşiyan bo Herêma Kurdistanê. Wek mînak gelek partiyên Kurdistana Îranê hene, ji wan Partiya Demokrat, Komele û aliyên din ku niha li Herêma Kurdistanê ne. Wan xebata çekdarî kirine û niha jî dikarin encam bidin, lê ew ji ber berjewendiyên Herêma Kurdistanê êrişên çekdarî pêknayînin û çalakiyên siyasî li vir û li Îranê dimeşînin. Bi baweriya min PJAK jî divê biryara xwe ya dawî bide. Bi nerîna me divê dest ji xebata çekdarî berde û çekê deyne. Îro nasnameyeke Herêma Kurdistanê û ewlekariyeke wê heye, ew jî ew e ku Herêma Kurdistanê di pêş hemû karên me de ye.

**We qet gotûbêj û biryarek daye derbarê bicîhkirina Hêza Pêşmerge û Hêzên Parastina Sînor li navçeyên sînor yên Herêma Kurdistanê û hêzên PKKê li navçeyên sînor nemînin?**

**Pirsa Kurd li Tirkiyeyê pirsa miletekî ye, lê ne ya PKKê ye, divê ev rastî ji li bîra wî be ku pirsgirêk divê li ser masa gotûbêj û danûstanan bê çareser kirin, ne bi top û firoke, ne bi leşker û gerîlla**

Em niha mijûlê tevgereke xurt a dîplomasî û rûniştina digel hemû aliyan de ne ku bikaribin bigihin wê armancê. Em naxwazin pirsgirêk pêk bên û ti kes rastî wan bê û ti şer çêbibin. Em niha mijûlê wê yekê ne, bi awayekî aram û dîplomatîk hewl didin em li ser sînoran bin.

**Lê PJAK dibêje ev yek sal e me ti êrîşeke çekdarî dijî Îranê pêkneaniye?**

Ez ne bawer im ku ev tevahiya rastiyê be. Ger wiha be divê rabighînin, çima ew bi eşkere nabêjin me şerê çekdarî rawestandiye. Lê li Îranê xelkê wan hatiye girtin û niha di zîndanan de ne, gelek ji wan ên girtî jî hevwelatiyên Tirkiyeyê ne.

**Gelo piştî vê serdana we, wê hatin û çûna dîplomatîk di navbera Îranê û Herêma Kurdistanê de zêdetir bibe. Gelo Serokê Herêma Kurdistanê wê serdana Îranê bike û berpirsên mezin ên Îranê jî wê bên Herêma Kurdistanê?**

Ji xwe ev çend meh e Îranê vexwandineke fermî ji Serokê Herêma Kurdistanê re şandine ku serdana wî welatî bike. Birêz Serokê Herêma Kurdistanê jî ew vexwandin qebûl kiriye, niha axaftin derbarê jivanê wê serdanê de tê kirin. Bêguman Serokê Herêma Kurdistanê di demeke maqûl de bo herdu aliyan wê serdana Îranê bike.

**Piştî êrişên gerîllayên PKKê di 17.08.2011 li navçeya Çelê, Tirkiyeyê dest bi topbaran û êrişên asmanî kir bo nav xaka Herêma Kurdistanê. Hûn çawa berê xwe didin vê tevlihevî û aloziyê?**

Ez vê derbarê de dixwazim giliyan ji PKKê bikim. Em ger berê xwe bidin rewşa berî wan êrişên PKKê, em ê bibînin ku PKK di rewşekê de bû ku dikarî gelek sûdê jê bibîne, lê mixabin PKKê piştî hilbijartinên Meclîsa Tirkiyeyê yên 12 Hezîrana îsal, siyaseteke şaş meşand. Ger li bîra we be, min berî du mehan ji rojnameya Milliyet a tirkî re got ku niha gok di sahaya Tirkiyeyê de ye û divê Tirkiye pêngavên din ên ciddîtir bavêje bo çareseriyeke siyasî û aştiyane ya pisa Kurd. Min heta behsa wê yekê jî kir ku rewşa Abdullah Ocalan di zîndanê de divê baş bikin û gotûbêjên siyasî digel wî bên kirin, wek aliyekî çareserkirina pirsa Kurd. Diyare di astekî bilind de gotûbêjeke berfereh digel Ocalan hebû û ew wek karakterekî siyasî di nav pirsgirêkê de dihat xuyakirin. Lê şaşiyên PKKê ev proses tevlihev kir û hewlên navbera Tirkiye û Ocalan jî têk dan.

Şaşiya yekemîn ew bû ku Partiya Aştî û Demokrasiyê (BDP) meclîs parlemento parlemento kir, parlementerên wan neçûn parlementoyê û sond nexwarin. Ev şaşiyeke stratejîk bû, pêwîst nedikir wiha bikin, bi taybetî di vê rewşê de ku meseleya darîştina destûreke nû bo Tirkiyê di rojevê de ye. Divabû ew li wir wek yek ji giringtirîn saziyên Tirkiyeyê axaftina xwe bikirana, mîna ku birêz Serokê Herêma Kurdistanê got, divabû wan li wir şerê xwe bikira. Wan ti derfet nedan Serokêwezîr Erdogan da bizanin ew ê piştî hilbijartinê çi bike yan çi nake. Şaşiya duyemîn encamdana êrîşên çekdarî bû, bi taybetî kuştina 8 leşkeran rewş aloz kir. Em eger berê xwe bidin cihê cografî yê encamdana wê êrîşê, em ê bibînin ku li ser sînorê Herêma Kurdistanê pêkanîne. Eger wan di kûratiya axa Tirkiyeyê de bikirana wê cudatir bûye, lê encamdana wê êrîşê li wê navçeya sînor dubare ew tişt îsbat kir ku PKK bi van şerên xwe qet berjewendiyên Herêma Kurdistanê li ber çav nagire. Şaşiya sêyemîn jî ew bû ku di encama êrişên çekdarî yên PKKê de gotûbêjên ligel birêz Ocalan têk çûn, wan bi şaşiyên xwe Ocalan ji kesekî ku gotûbêj ligel dihatin encamdan, kirin kesekî ku li aliyekî hatibe danîn. PKK eger berê xwe bide van tiştan, gelo ev ne siyasetên şaş bûn bo PKKê bi xwe jî? Ma ev ne siyasetên şaş in ku pêwîst nedikir PKK wan bike? Bêguman ev şaşiyên mezin bûn. Kuştina

**Xwestekek heye ku bi rastî dixwaze bigihe encamekê, lê dema ew nêzîkî encamê dibe destekî têkder heye rasterast dikeve pêşiyê û hêza wî destî jî heye ku bi tiştekî zêde biçûk prosesa gelekî mezin seqet bike û têk bide**

# PKKê piştî hilbijartinên 12 Hezîranê siyaseteke saş meşand

- Boykotkirina Meclîsê ji aliyê BDPê xeletiyeke stratejîk bû
- Çekdanîna PKKê di çarçoveya proseyeke siyasî de mimkûn e
- Sed operasyonên leşkirî jî vê pirsgirêkê bi dawî nayînin
- 'Divê Erdogan bi BDPê re rûne û gotûbêjan ligel wan bike

leşkeran şaşî bû, ji aliyekî din ve em gelekî xemgîn in bi jinavçûna malbateke bêguneh a Herêma Kurdistanê di encama êrişên Tirkiyeyê de. Ez sersaxiyê li wan dikin û sebrê ji wan re dixwazim himber vê trajediya mezin. Ez hêvîdar im xweda sebir û hedarê bide wan. Tişta ti guman li ser nîne ew e ku pirsa Kurd di vê serdemê de ne bi şer çareser dibe û ne bi şer bi dawî dibe.

**Lê ji aliyekî din jî Recep Tayyip Erdogan ku çendîn car soza çareserkirina pirsa Kurd da, di kampanya hilbijartinên 12 Hezîranê de û piştî wê jî got li Tirkiyê pirsa Kurdî nîne, lê pisrgirêka terorê heye û wê vêna ji holê rakin. Gelo ev ne şaşî û paşdegavavêtin bû di mesela çareseriya aştiyane de?**

Her hewldanek hebe, tenê yek rêya rast heye, ew jî çareserkirina aşîtiyane ya pirsa Kurd e. Min behsa şaşiyên PKKê kir, wek kesekî ku bi hûrî çavdêriya rewşa Tirkiyeyê dikim, ji ber Tirkiye bo Herêma Kurdistanê gelekî giring e. Bêguman ti şik di wê yekê de jî nîne ku Erdogan li Tirkiyê hinek karên mezin kirin, dibe mebest ji van karan ne Kurd bin, lê ew di berjewendiya Kurdan de bûn, wek mînak mesela guhertina destûrê ku berî hatina Erdogan kesî fikir lê nedikir ev hemû maddeyên destûra Tirkiyeyê bên guhertin ku zemîneke gelekî baştir ji berê bo demokrasî û siyasetkirina Kurdan jî anî pêş. Herwiha derbarê Kurdan de kesî fikra wê yekê nedikir dewlet bi xwe televizyoneke bi zimanê kurdî dabimezrîne, xelkên bi pileyên bilind li ser tawanên tarî bên dadgehkirin, ev hemû ciyê rêzgirtinê ne ku birêz Serokwezîrê Tirkiyeyê Recep Tayyip Erdogan encam dane. Lê mixabin ew daxuyaniyên vê dawiyê yên Erdogan, dema got li Tirkiyeyê pirsa Kurd tune, ew ne tiştekî rast e û şaşî ye, evna bandorê li baweriya xelkê ya bi wî jî dike, ji ber berê behsa wê yekê kiribû ku pirsa Kurd heye û ew pirsgirêkeke siyasî û pirsgirêka min e û ez ê çareser jî bikim. Pirsa Kurd li Tirkiyeyê pirsa miletekî ye, PKK hebe yan nebe ew milet her wê hebe. Ez di wê baweriyê de me ku divê gelek realîstir û bi mêjiyekî vekirîtir tevger ligel vê rewşê bê kirin. Bi baweriya min wiha baş e ku birêz Erdogan niha daxwaz bike parlementerên BDPê biçin civînên parlemenê, Tirkiye jî gotûbêjan ligel wan bike bo gihiştina encamekê, ji ber ku şer ji bilî malwêraniya herdu aliyan û malwêraniya zêdetir, ji bilî têkdana wê zemîneya ku bo birêveçûna gotûbêjan hatibû afirandin, ku birêz Serokê Herêma Kurdistanê jî rolekî gelekî bi bandor tê de dît, ti encam û destkeftiyeke din nabe.

**Niha behsa wê yekê tê kirin ku Tirkiye piştî cejna Remezanê wê operasyonên bejayî bo nav axa Herêma Kurdistanê encam bide, herwiha di nav Tirkiyeyê de jî wê 1400 berpirs, endam û serokên şaredariyên din ên BDPê bên girtin. Bi dîtina we Tirkiye pêwîste wiha bike yan fikra rêya siyasî bike?**

Eger sed operasyonên leşkerî jî pêk bîne, ne tenê 1400 lê gelek zêdetir jî bigire, ev pirsgirêk bi dawî nabe. Çareserkirina vê pirsgirêkê pêwîstî bi biryareke din a wêrek ji aliyê Hikûmeta Tirkiyeyê ve heye, ez bawerim îro derfeteke û birêz Erdogan dikare gelek karan pêk bîne, ew di parlementoyê de piranî ne, li Tirkiyeyê bi hêz e, li cîhana îslamî û cîhanê bi giştî jî bi hêz e, derfetek bo Erdogan bi xwe jî hatiye ku ew vê pirsê çareser bike û Tirkiyeyê ji pirsgirêkekê rizgar bike ku gelekî di berjewendiya herdu gelên tirk û kurd de ye, herwiha di berjewendiya pêşketina berdewam a Tirkiyeyê de ye. Pirsa Kurd li Tirkiyeyê pirsa miletekî ye, lê ne ya PKKê ye, divê ev rastî jî li bîra wî be ku pirsgirêk divê li ser masa gotûbêj û danûstanan bê çareser kirin, ne bi top û firoke, ne bi leşker û gerîlla.

**Ango hûn di wê baweriyê de ne ku divê Partiya Dad û Geşepêdan a Erdogan û BDP gotûbêjan pêk bînin, lê ne wek Erdogan berî demekê got em êdî digel wan ne axifin?**

Bi baweriya min ev ne rast e. Gelekî pêwîste ew digel BDP û aliyên din jî baxive û gotûbêjan bike, ji ber ku di vê yekê de xêra Tirkiyeyê bi giştî û ya Kurdan jî bi taybetî heye. Ez bawer im ku ji bo derketina ji vê tengezariyê divê ew banga aşîtiyê bike. PKK jî bêguman divê çekan bêdeng bike û kar ji bo xweşkirina zemîneya çareserî û aşîtiyê bike.

**Niha li Tirkiyeyê mesela danîna destûrekî nû li pêş e. Wek çawa dibêjin destûra nû ya Îraqê, Îraq ji aliyê sistem û destûrê ve guherand, ev destûr jî wê Tirkiya nû ava bike, lê van şer û pêkdanên dawiyê rewşa maqûl têk da ku raya giştî ya Tirkiyeyê û partiyên Tirkiyeyê jî digel wê yekê bin destûrek bê danîn ku gelek mafên Kurdan tê de bicih bibin. Nerîna we çi ye?**

PKKê bi kiryarên xwe yên leşkerî yên vê dawiyê ew hevsoziya ku li ba gelê Tirk himber mafên Kurdan çêbûbû, kuşt û dengên şovenist bi hêz kirin. PKKê bi êrişên xwe raya giştî

> **Eger sed operasyonên leşkerî jî pêk bîne, ne tenê 1400 lê gelek zêdetir jî bigire, ev pirsgirêk bi dawî nabe. Çareserkirina vê pirsgirêkê pêwîstî bi biryareke din a wêrek ji aliyê Hikûmeta Tirkiyeyê ve heye.**

ya Tirkiyeyê dijî Kurdan livand, herwiha BDPê jî bi neçûna parlementoyê pirsgirêkeke kêmbuhatir bi ser mesela destûrê dixe, ev herdu tişt jî ne di berjewendiya wê yekê de ne ku Tirkiye bibe xwediyê destûrekê ku mafên Kurdan tê de bên bicihkirin. Pêwîst bû niha li şûna ev kiryarên çekdarî bên encamdan û ev operasyonên leşkerî bên kirin, herwiha li şûna gef û gefkariyê Kurd mijûlê wê yekê bûna ka çawa ew destûr bi awayekî bê nivîsandin ku mafên Kurdan têde bên misogerkirin û Tirkiye berbi pêşve bibe, çawa dikarin zêdetir mafên xwe di wê destûrê de bicih bikin û bo vê yekê projeyan pêşkêşî raya giştî ya Tirkiyê bikin, lê ne ku PKK bi çend kiryarên çekdarî raya giştî ya Tirkiyeyê li dijî Kurdan bixe tevgerê.

Ez dîsan dibêjim, Kurd pêwîste li Tirkiyê siyaseteke aştiyane bidin meşandin û dest ji şîdetê berdin, ji ber ku rewşa Tirkiyeyê, demokrasiya niha ya Tirkiyeyê, têkilî û girêdayînên Tirkiyeyê digel welatên Ewrûpa û têkiliyên Tirkiyeyê digel Amerîka ev hemû bi hev re xalên gelekî girîng in û Kurd dikarin gelekî bi başî sûdê jê bibînin û xebateke bi hêz a siyasî û aşîtiyane û sivîl ya bi bandor peyrew bikin. Kiryarên çekdarî tenê zerarê didin Kurdan, raya giştî ya Tirkiyeyê dijî Kurdan dixe tevgerê û polîtîkaya hikûmeta Tirkiyeyê diguherîne, navê Kurdan li derve têk dide. Ez çend berê xwe didim rewşa Tirkiyeyê, dibînim ku tevî wê yekê jî xwestekek heye ku bi rastî dixwaze bigihe encamekê, lê dema ew nêzîkî encamê dibe destekî têkder heye rasterast dikeve pêşiyê û hêza wî destî jî heye ku bi tiştekî zêde biçûk prosesa gelekî mezin seqet bike û têk bide. Ev rewşa niha ya Tirkiyeyê derfetek bû ku şansek ji Erdogan re bê dayîn ka wê vê rewş û prosesê berbi ku de bibe, ewqas salan tehemul hat kirin, pêwîst bû demeke din jî tehemul bihata kirin, BDP-ê û wan hêzan diviyabû tehemul bikirana. Hertim derfeta te heye bo destpêkirina xebata çekdarî li Çelê û derdorên wê, lê dema derfeta siyasî û aştiyane têkçû û hat têk dan, gelekî zehmet e careke din çêbibe. Mixabin vê carê jî hat têk dan.

**Amerîka ji bilî ku asmanê Îraqê di destê wê deye, êrişên asmanî yên Tirkiyeyê jî bi agadariya wan tên kirin. Bi nerîna we Amerîka divê çi rolekê bilîze bo nehiştina vê rewşê û alîkarîkirina çareserkirina pirsa Kurd li Tirkiyeyê, çi bangewazeke we heye bo Amerîka di vê bareyê de?**

Bi baweriya min divê Amerîka ligel Tirkiyeyê hewla çareseriyeke aşîtiyane bide, hewldana Amerîka û welatên Ewropa bo çareserkirina aşîtiyane ya pirsa Kurd gelekî girîngtir e ji wêya ku rê bide firokeyên Tirkiyeyê bên navçeyên Herêma Kurdistanê bombebaran bikin. Ev bombebarankirin ji bilî zerara xelkê sivîl ê navçeyê, ti destkefteke din a wan tune bo hemû aliyan û ji wan jî Tirkiye.

***Hevpeyvîn: Ako Mihemed***

## “Min di sala 1996ê de Abdullah Ocalan li Sûriyê dît”

**Rûdaw: Hûn dibêjin PKK divê êriş neke û çekan deyne aliyekî, Ocalan jî meha borî got ez ê di hundirê hefteyekê de hemû gerîllayan li cihekî kom bikim. Balyozxaneya Amerîka li Bexda jî di daxuyaniya dawiyê de bo Rûdawê dibêje divê PKK bê merc çekan deyne. Gelo ev çekdanîn hema wiha bê ti prose û di keşûhewaya şer de pêk tê?**

**Nêçîrvan Barzanî:** Ez di wê baweriyê de me ku nabe PKK bi xurûr ligel bi van bûyeran tevbigere, bi baweriya min çekdanîn di çarçoveya proseyeke siyasî ya çareseriya vê pirsgirêkê de mimkun e. Prosesek divê bê dest pê kirin, divê Hikûmeta Tirkiyeyê proseya vebûna demokratîk germ bike, divê di encama wê proseya siyasî de jî bighije wê qonaxê da ku çek bên danîn. Mirov divê hinekî realîst baxive, lê hema bibêjî çekan dane, ev ne mimkun e. Proseyek divê bê dest pê kirin û tu di wê proseyê de bighîjî wê qonaxê. Li Tirkiyeyê îro îmkana xebata sivîl heye, li nav parlemento û li ser caddeyan bi şêweyekî sivîl. Kurd dikarin gelekî bi başî sûdê ji van waran werbigrin. Xebata Kurdan a li Tirkiyeyê divê bi hemû şêweyan, bi rêyên aşîtiyane bê meşandin. Min di sala 1996ê de Abdullah Ocalan li Sûriyê dît, wî pirsyarek ji min kir ku ti carî ji bîra min naçe, pirsî “bi nerîna we em çi bikin?“ Min got bi baweriya min divê tu ji serê sibê û heta êvarî bibêjî aştî aştî, ti carî behsa tiştên din neke, hûn wiha dikarin viyan û piştevaniya Ewrûpa û Amerîka bidestbînîn, lê divê ev biryar be û tu li ser wê biçî, ne hemû rojan biguherînê, ev divê bibe biryareke we ya stratejîk. PKK jî divê îro biryareke stratejîk bide û xebata aşîtiyane û siyasî bibe hilbijartina PKKê ya stratejîk.


Wêne: Rûdaw

**Rûberê wan daristan û rezên ku sala borî bi sedema topbaran û agirberbûnê şewitîne, sê car qasî wê rûberê ye ku Wezareta Çandinyê di 11 salên borî de çandine.**



### Bi sedema topbaranê û bi zanebûn

# Sala borî 184 donim daristan û rezên Kurdistanê şewitîne

**Rewa Ebdulla**

Rêvebirê Daristan û Rezvaniyê li Wezareta Çandinî û Çavkaniyên Ava Herêma Kurdistanê got ku rûberê wan daristan, rez, bax û reviyên ku di sala borî de bi sedema topbaran û agirberbûnê şewitîne, sê carê wî rûberîye ku Wezareta Çandinyê di yazde salên borî de çandiye, wî herwiha got: "Li hin ciyan rêjeya şewitîna daristanan gihaye astekê ku lazim e 20 sal derbas bibin ku careke din vegerin ser rewşa xwe."

Li gor Wezareta Çandinî û Çavkaniyên Avê, bi sedema topbaran, destên ku bi zanebûn tevgeriyane û hin sedemên din, sala borî 602 bûyerên agirberbûnê li navçeyên cudayên Herêma Kurdistanê qewimîne û bi sedema wan rûberê 184 hezar û 29 donimên daristan, çol, rez û bax hatine şewitandin.

Di vê salê de pişka mezin para Parêzgeha Silêmaniyê bû ku 126 hezar û 214 donimên erdê wê şewitîn, paşî Parêzgeha Hewlêrê ku 27039 donimên wê şewitîn, navçeya Germiyan jî bi rûberê 22 hezar û 29 doniman û paşî Parêzgeha Duhok ku 8 hezar û 747 donimên wê şewitîne.

Rêvebirê Daristanan li Wezareta Çandinî û Çavkaniyên Avê, Tûfîq Derwêş got ew agirên ku di çend salên borî de berbûne daristanên Kurdistanê zirareke mezin gihandine daristan û jîngeha Kurdistanê û bûne sedema şewitîna bi hezaran donimên daristanên sirûştî, çol û rezan, wî herwiha got: "Topbarana ku niha li navçeyên Sîdekan, Çiyayê Qendîl, sînorê Tirkiyeyê û navçeyên din tê kirin zirareke mezin gihandiye daristanên sirûştî, çol û jîngeha Kurdistanê, ji ber ku her topa ku bi daristanekê dikeve rûberekî mezin ê daran dişewtîne ku ji sedî 80 wan dar berû ne û temenê hinekan dorên 50 salî ye."

### Li Kurdistanê bêtirî 5 milyon domînên daristanan hene

Ji serhildanê û heta niha ti pîvanek bo rûberê daristan, rez û çolên li Herêma Kurdistanê nehatiye kirin, lê li gor pîvana texmînkirî ya Wezareta Çandinî û Çavkaniyên Avê, Herêma Kurdistanê xwediya 5 milyon û 300 hezar donimên daristanê ye.

Wî endazyarê Wezareta Çandiniyê got ku berî 60 salan rûberê daristanên Îraqê ji sedî 4 bû û ji sedî 80 wan li Kurdistanê bû û wiha dom kir: “Lê ji ber agirberbûn, birîna daran û gurtina seqayê dinyayê, niha kêtirî ji sedî 2 maye." Navhatî herwiha got "Me bi temamî darbirîn qedexe kiriye bo parastina vî rûberê daristanan, me herwiha di 11 salên borî de 60 hezar donim daristanên çêkirî çandine, sala dahatî jî em dixwazin 5 milyon daran biçînin."

Li gor amarên Wezareta Çandiniyê sal bo sal hejmara agirberbûna daristan, rez, bax û çolan zêde dibe. Wezareta Çandiniyê jî himber vê xeterê bi şêweyekî klasîk tevdigere, ango bi rêya tîmên daristanan, tîmên agirberbûnê, herwiha xelk jî bi dar û hin rêyên din hewla kontrolkirina van agiran dide. Lê li bêtiriya welatan tîmên taybet ên vemirandina agirên daristanan hene ku firoke û ji bo kontrolkirina agiran amûrên reşandina ji dûr bikar tînin.



Li Dêrsim, Şirnex û Amedê piştî operasyonan daristan dişewitin

Tofîq Derwêş got, "me gelek pêwîstî bi firoke, amûrên pêşketî, çêkirina golên avê di nava daristanan û herwiha tîmên taybet ên hînkirî li ser çawaniya kontrolkirina agirê daristanan heye. Lê kirîna firokeyên taybetî diravekî mezin û razîbûna Bexdayê jî jê re pêwîst e, herwiha avakirina golên avê jî pêwîstî bi budce û demê heye."

Navborî retkir ku wan di kontrolkirina agiran de xemsarî kiribe, wî got wan li hin daristanan hêlên qutkirina agirî û li hin navçeyan jî dermanê şilkirina giya û dijî agiran reşandine.

Li gor amûrên du mehên borî yên agirberbûn û şewitînên li sinorê Parêzgeha Silêmanî 5 hezar û 174 donimên erdê şewitîne (3281 donimên daristanên siruştî, 116 donimên daristanên bi dest çêkirî, 1058 donimên çolê û 719 donimên baxan)

Rêvebirê Daristan û Çolên Silêmaniyê, Cemal Reşîd got, "tevî ku rûberê di van du mehan de şewitiye gelek e jî, lê tiştekî baş e ku bêtiriya darên şewitî şansê wan ê dubare şînbûnê heye."

### Hêşta bi hejên darên tê vemirandin

Daristan û çolên navçeyên sinorî bêtir ji navçeyên din dişewitin, ji ber topbaranên Îran û Tirkiyeyê û herwiha ji ber dûriya wan ji bingehên tîmên vemirandina agir.

Qaymeqamê Qeza Çoman, Ebdulwahid Guwanî got bêtiriya agirên ku li navçeyên sinorî çêdibin, bi sedema topbaran, şaşiyên hevwelatiyan û kesên ku bi zanebûn wî karî dikin pêktên. Guwanî got, "Herçende em hemû salan di werzê zuhabûna darûbaran de, tevî polîsên daristanan, karmendên parastina şaristanî û Pêşmergeyan jî dikevin rewşa amadebaşiyê, lê ji ber asêbûna ciyên berbûna agir û nebaşiya amûrên li ber destên tîmên agirvemirandinê, em nikarin kontrola agiran bikin."

Pisporê Daristan û Rezvaniyê û Mamosteyê Koleja Çandiniyê li Zanîngeha Selahedîn, Dr. Şêrzad Omer rexneyê li hikûmet û Wezareta Çandinî û Çavkaniyên Avê digire ji ber ku rêyên gelek klasîk didin meşandin bo vemirandina agiran, mamoste got, "Li welatên pêşketî ji bilî dabînkirina firoke û tîmên taybetî yên vemirandina agirên daristanan, herwiha burcên taybetî jî bo çavdêrîkirina daristanan hene da ku di demê agirberbûnê de bi rêya GPS ciyê agir destnîşan bike û bi zûtirîn hewla vemirandinê bidin, lê li Kurdistanê heta niha otomobîlên vemirandina agirên malan û herwiha hejên daran bo vemirandina agiran bi kar tên."

Dr. Şêrzad di demeke zûtirîn de bi armanca çawaniya rûbirûbûna agirên daristanan sazkirina konferansekê û nexşerêyek bo kontrolkirina agiran bê danîn, pêwîst dibîne; herwiha dibêje, “Divê ji hikûmetê bê xwestin ku budceyeke taybetî bo kirîna amûrên pêwîst û damezrandina tîmên taybetî yên vemirandina agiran ava bibin.“

# Li Herêma Kurdistanê 51 hezar nezok hene

Cigare, alkol, maddeyên hişber, pîsbûna jingehê, kêmiya vîtamîna C û hinek şampûan û kremên kîmyevî dibin sedemê neçêkirina zarok

**Rewa Ebdulla** Hewlêr

Ehmed û hevjîna xwe piştî çendîn salan bi ser zewaca wan û herwiha piştî ku wan serdana bi dehan doxtor, şêx, mela û salihan kirin jî hêşta zarokekê wan tune. Hêviya wan a dawî ceribandine bi rêya çêkirina zarokên lûliyan e: "Jina min ev meh û nîv in ducan e, lê pizîşkan ti soz nedane ku ew serketî be."

Ehmed Îbrahîm (33) got ti pirsgirêkeke wî tune, lê derfetên hevjîna wî di warê çêkirina hêkan de lawaz e. Ehmed got "em gelekî dixwazin ku zarokekî me hebe, me heta niha bêtirî 30 hezar dolaran xerickirine, lê bêyî sûd bû."

Nezokî yek ji wan pirsgirêkên ku bûne bela serê bi dehan malbatan û bi dehan jî hatine hilweşandin, tevî ku Wezareta Tendirustî jî ti amareke tomarkirî nîne derbarê hejmara wan malbatên bê zarok, lê pizîşkên pispor dibêjin "li Kurdistanê hejmara nezokan roj bo rojê zêde dibe."

### Nezokî çi ye?

Nezokî tê wateya nebûna îmkanên çêkirina zarokan ji aliyê jin û mêrên ku betirî salekê bi şêweyekî berdewam bi hev re radizên û ti rêgirekî zarokbûyînê jî bikarnayînin.

Pizîşk amaje didin wê yekê ku du corên nezokiyê hene, ew jî; nezokiya seretayî (Primary infertility) û nezokiya duyemînî (secondary infertility). Cora yekemîn ji wan jin û mêran re tê gotin ku piştî zewacê ti zarokekî wan çênabe, corê duyemîn jî bo wan jin û mêran tê gotin ku berê zarokên wan çêbûne, lê piştre rastî pirsgirêka nezokiyê dibin.

Lêkolînên zanistî ew yek diyarkirine ku ji sedî 40 sedemên nezokiyê ji mêran e û ji sedî 40 jî ji jinan e û ji sedî 10 jî ji herduyan e, rêjeya ji sedî 10 a mayî jî hêşta nehatiye eşkere kirin, ango ti pirsgirêkên herdu aliyan tune ne, lê zarokên wan çênabin.

### Li Kurdistanê jinên nezok ji mêrên nezok bêtir in

Pispora Nexweşiyên Jinan û Zarokbûyîn û Nezokiyê, Dr. Sebriye Xidir amaje da wê yekê ku li Kurdistanê berevajî welatên din rêjeya jinên nezok ji rêjeya mêran bêtir e.

Vê pisporê amaje da sedemên nezokiya jinan li Herêma Kurdistanê: temen, girtina lûliyên hêkdanê, nedirustiya zarokan, lawaziya çêkirina hêkan, avabûna kîsên avê li ser hêkdanê.



Ji %40 sedemê nezokiyê mêr, %40 jî jin in. Carna jî herdu bi hevre dibin sedem...

Dr. Sebirye Xidir derbarê bandora temenî got bandora temenê rasterast li ser nezokiya jinan heye û got: "Ji ber ku çiqas temenê jinê mezin be hêkdanên wê berbi zuhabûnê diçin û îmkana çêkirina zarokan lawaz dibe." Ew herwiha dibêje: "Carna girtina lûliyên hêkdanê bi sedema îltihaba rehîmê jinê û firehbûna wê îltihabê berbi nava lûliyên hêkdanê pêktê, yan gelek caran jî di dema encamdayîna operasyonê bo jêkirina kîsên avê hêkdan zirar dibîne û piştre nikare hêkan çêke, hin jin jî hene ji zikmakî de lûliyên hêkdanên wan bi corekê avabûne ku rê nadin hêk di nav re derbas bibe."

**Hin hevjîn hene ligel ku tendirustiya wan di cih de ye jî zarokê wan çênabe**

Xidir amaje da wê yekê jî ku ji bilî sedemên li jor, gelek jinan jî pirsgirêkên wan ên di warê çêkirina hêk û zarokan de hene ku ya yekemîn vedigere bo (Thyroid) û zêdebûna hormona Prolactin a şîr û hormôna mêran, ya duyemîn jî sedema wê avabûna perdeyeke ku rê nade zarok di rehmî de mezin bibe.

Çendîn sedemên din jî hene, mînak derengmayîna adeta mehê ya keçan, qelewî û hebûna maddeyekê di nav lûliyên hêkan de ku spermê mêran dikuje.

Li gor amarên giştî yên cîhanê, ji her 7 jin û mêran yek jê pirsgirên wan ên zarokbûyînê hene.

### Rêjeya ji sedî 35 a nezokiyê mêr in

Pisporê Nexweşiyên Nezokiya Mêran, Dr. Zeheriya Ebdulla Xeyat got li Kurdistanê ji sedî 30- 35 sedema nezokiyê mêr in, lê mêr weke jinan li pey çareseriyê nagerin.

Li gor axaftinên wî sereketirîn sedemê nezokiya mêran pêktê ji: bêserûberiya derxistina hormona bin mêşkrêjê ku bandorê li fermangên gun dike, pirsgirêka lawaziya çêkirina tovî ji aliyê gunan ew jî bi sedema maddeyên tîşikavêj, dirêjbûna lûliyên ku xwînê digihînin hêkên gun, îltihaba protstat, zêdebûnê hormona şîr û kêmiya şekir û girtina lûliyên spêrmê.

Dr. Zekeriya amaje da wê yekê ku cigarekêşan, vexwarina zêde ya alkolê û hişber, pîsbûna jîngehê, mijtina maddeyên kîmyayî bi taybet qirkên mêroyan, germbûna gunan, kêmiya vîtamîn C û dermanên ku bo avakirina laş (bodybuilding) a mêran tên bikaranîn, ev hemû zirarên mezin didin pêkhate û çalakiya spêrmê û dibin sedema wê yekê ku sperma mêran îmkana pîtandina hêkan û çêkirina zarokan nebe. Ew herwiha dibêje "gelek caran di nava gun de maddeyek çêdibe, sperman dikuje û mêran rastî nezokiyê dike."

Dr. Zekeriya di wê baweriyê de ye ku nehişyariya mêran derbarê seks û guhertinên fîzîkî yên laşê jinê, sereketirîn sedemê zêdebûna rêjeya nezokiyê li Kurdistanê ye, herwiha got "gelek mêr giringiyê nadin demên guncayî bo razana bi jinê re bi mebesta çêkirina zarokan ku zanistê îsbat kiriye 13- 15 rojên piştî qediyana adeta mehê ya jinê, ji bo zarokçêkirinê baştirîn dem e, ji ber ku di wê demê de hêkên jinê avadibin û tên jêr."

Li bajarê Hewlêrê di sala 2000î de çend kesên ku pirsgirêkên wan ên zarokbûyînê hene, komeleyek bi navê "Komeleya Awat" damezrandin û niha wê komelê bêtirî 7 hezar endamên wê hene û bûye hevxema wan kesên ku pirsgirêka wan a zarokbûyînê heye.




# Melayên kurd fedî dikin têkevin Facebookê

**Hêmin Baban Rehîm**

Mamosteyên olê yên kurd zêde berê xwe nadin çêkirina malperên înternet û rûpelên Facebookê, lê mamosteyek navdar bikaranîna înternet û bi taybetî Facebookê bo mamosteyên oldar "pêwîst" dibîne. Mamosteyekî mezheba Şiî jî dibêje "çalakiyên mamosteyên oldar yên Şiî, ji yên Sunnî bêtir e."

Mamosteyê oldar û gutarbêjê Mizgefta Macidawa li Hewlêrê, Ferman Xerabeyî di daxuyaniyekê de bo Rûdaw amaje dide wê yekê ku ji bo têkiliya digel xelkê gelekî girîng e mamosteyên oldar yên kurd malperên wan hebin û bi taybetî jî li ser Facebookê xwe tomar bikin.

Xerabeyî rexne li mamosteyên oldar yên kurd digire ku çalakiyên wan di vî warî de sînordar in û dibêje: "Mamosteyên olê yên ereb û fars di warê înternetê de gelek çalak in û kêm kesên wan hene ku malpera wî û Facebooka wî nebe."

Ferman Xerabeyî ku malpera wî ya taybetî û rûpela wî ya Facebookê jî heye, dibêje wî gelek sûd ji Facebookê dîtiye û dibêje: "Pir caran ne mimkûn e hinek kes rasterast yan jî bi rêya telefonê pirsyarên xwe bikin, ev jî wisa dike ku ew kes berê xwe bidin malperên mamosteyan yan jî rûpelên wan ên Facebookê, ev jî hêsankariyeke gelek baş e."

Şêx Ebdulemîr Xefacî ku mamosteyekî olê yê mezheba Şîi ye, di rêya rûpela xwe ya di Facebookê de bersîva pirsyarên Rûdawê da û got: "Ev demeke dirêj e Facebooka min heye û ez wê weke tiştekî gelekî rewa û baş dizanim da ku mamosteyên olê bi gelek bi hesanî bi derdorên xwe re têkildar bimînin."

Berpirsê Ragihandina Wezareta Ewqaf û Karûbarên Olî ya Hikûmeta Herêma Kurdistanê dibêje ew gelekî dixwazin ku "mamosteyên olê di warê înternêtê de pispor bin."

Wezareta Ewqafê jî heta niha jî bo mamosteyên olê bi mabesta hînkirina înternetê çend kurs vekirine.

# Davutoglu û Hêştirme



**Mahmut Kilinc**

Li ser pirseke rojnamegerekî, Wezîrê Karê Derve yê Tirkiyeyê Ahmet Davutoglu ewil qebûl nake ku di encama bombebarana firokeyên tirk de ji malbatekê heft kes hatine kuştin û paşê jî gefekê li gotina xwe zêde dike û dibêje "Ji welatekî ku li dijî Tirkiyeyê terorek encam bide, dema Tirkiyeyê pêwîst bibîne, wê operasyonan lidarxe."

Nizanim çiqasî rast e, dibêjin "hêştirme serê xwe dike nava xîzê (qûm) lê qûna xwe li derve dihêle." Dibe ku li hêştirmê babetî (layiqî dîtin) hatibe kirin, lê ji bo Davutoglu ev gotin bêşik di cih de ye.

Davutoglu ne carekê, du caran qûnê li derve dihêle. Carekê ew qetlîamê qebûl nake, heçkû ew qetlîam ne bi êrişên "firokeyên nenas", bi êrişên firokeyên tirk rû da û hêzên têkildarê karûbarê Îraqê jî vê rastiyê baş dizanin. Carekê jî, bi pênas kirina têkoşîna bakurê Kurdistan wekî êrişên ji welatekî derve, qûna xwe li derve dihêle. Ma qey dinya nizane ku ew pirsgirêka Tirkiyeyê ya navxweyî ye û ji welatekî derve ti êriş nabin. Hêzên gerîlla li her hêlên bakurê Kurdistanê çalakiyan dikin, bo mînak li Dêrsimê, li Amedê. Dêrsim nêzikî 700 km ji sînor dûr e, Amed nêzikî 600 km dûr e. Beriya ku ew firokeyên xwe bişîne, Tirkiye divê sînorên xwe bes kontrol bike. Eger nikane vî karî bîne cih, dikane ji Rêxistina Netewên Yekgirtî alîkarî bixwaze.

Di hêla din de, berpirsyarî ne tenê li ser milê Dewleta Tirk e. Lewra parastina serweriya xak û sînorên Îraqê erka Dewletên Yekbûyî yên Amerîka (DYA) û dewleta Îraqê ye. Herdu jî baş dizanin ku firokeyên artêşa tirk ew qetlîam kirin. Bala xwe bidin, ji DYA qet deng dernakeve, dijberiya wê ya PKK an PJAKê tiştekî din e, lê li dijî êrişek wisa bêdengî çi qasî li nirxên amerikî guncav e? Di gelek pevçûnan da DYA û dewletên Rojava li dijî karanîna hêza hevnegir (bênîspet) helwest digrin, lê dema êriş li dijî miletê Kurd dibin, ne tenê bêdeng dimînin, herweha êrişkara bi cesaret jî dikin. Li dijî çekek sivik firokeyên F16 û Kobra tên bi kar anîn, her çûreyê bombe serabera tên avêtin, herweha çekên qedexekirî bikar tên. Ka hiqûqa navneteweyî, ka mafên mirovan, ka serweriya xak û sînoran, ka helwesta li dijî kuştina sivîlan?

**Amerîka û Îraq jî baş dizanin ku firokeyên artêşa tirk ew qetlîam kirin**

DYA û hikûmeta Bexdayê bi qasî Tirkiyeyê berpirsyar in. Tirkiye ne yekem care ku zirarê digihîne mal û canê kesên sivîl. Çendin car in ku gundan, rê û piran, sewalan, daristanan, mal û milkê niştecihên herêmê dide ber bombebaranê.

Heçkû, DYA li Afganîstanê, li Îraqê, li Balkanan, li Pakîstanê li dijî "terorê" şerekî dijwar dimeşîne, lê di heman demê de ji bo çareserkirinê jî dikeve nav pêywendiyê. Tirkiye him çareserkirina pirsgirêka Bakurê Kurdistanê bi rêbazên demokratîk red dike û him jî çekên qexekirî û hêzek hevnegir bi kar tîne, lê ji kesî deng dernakeve. Li ku derê ma helwesta li dijî bikaranîna hêza hevnegir?

Em dizanin ku armanca Tirkiyeyê yek jî xirabiyek din e. Bi van êrişan ew dixwaze peywendiyên navbera hêzên kurd têk bibe. Jixwe nêşita tehîrkirin an necivandina konferansekê li başûrê Kurdistanê ket rojevê.

Mixabin rewşa Rojhilata Navîn destê Dewleta Tirk xurt dike. Bûyer û pevçûnên li Balkanan û Qefkasya û taybetî bêaramiya welatên ereb derfet dan û îro jî dide Tirkiyeyê ku sirtikiyê (zirtebozî) bike. Ewil Îraq bû, paşê dor hat Tunis, Misir û Libyayê, niha jî Sûriyê derket, sibe Îran û dusibe jî li herêmê dewletek din. Dibetî heye ku Tirkiye vê rewşê firsend bibîne û êrişên xetertir bike.

Tenê piştevaniya miletê kurd dikane pêşiyê li êriş û lîstikên wê bigre.

# Hikûmeta Rojavayê Kurdistanê



**Eyûb Nûrî**

Yek ji xemgîntirîn aliyên rewşa niha ya Sûriyê parçebûn û belavbûn û bê bernameyiya Kurdên Sûriyê ye. Erebên Sûriyê û derveyî Sûriyê jî, Tirkiye, Îran, Amerîka, Ewropa û Rûsyayê jî derbarê serdema piştî Beşar gotina xwe gotin û plana xwe diyar kirin, lê Kurd weke ku li Sûriyê nebin bêdeng û bê bername ne.

Gava car caran li vir û wir daxuyaniya siyasetmedarekî kurdê Sûriyê dixwînin yan partiyeke wan tiştekî derbarê vê rewşê de dibêje, mirov hest dike kes mîna Kurdên Sûriyê xema yekparçebûn û yekrêziya Sûriyê naxwe. Erebên Sûriyê ku piraniya wan Sunnî ne, vêga Xirîstiyan jî bi dizî, dixwazin rêjîma Beşar Esad birûxe û jinav here. Lê belê ev daxwazî ji Kurdên Sûriyê nayê bihîstin. Dijberên Îslamî û Sekûler yên Sûriyê konferans li dû konferansê girêdidin tenê bo behskirina wê yekê çawa rêjîma Beşar Esad birûxînin. Lê Kurdên Rojavayê Kurdistanê bi siyasetmedar û rewşenbîrên wan tu dibêjî qey tu kêşeyeke wan ya din tune ji bilî dîtina navekî nû bo Sûriyê.

Di yekemîn roja serhildana "Buhara Erebî" li Tûnisê û dûre Misirê, piraniya xelkê yek ser xeyala wan çûcem Sûriyê. Kurdên derve û hundirê welêt yek ser ji wê yekê piştrast bûn ku dora Beşar Esad jî tê û ew jî li ser hukim tê avêtin. Lê va ye 5 meh di ser serhildana Sûriyê re derbas dibin û Kurdên wî welatî gavek biçû bo xweamadekirinê piştî rêjîmê neavêtine. Erebên Sûriyê hemû tevî cudahiyên siyasî û olî hevdeng û hevgirtî ne, lê Kurd tevî dehên salan ji serkutkirin û çewisandin û bê nasnamebûnê, hê jî nizanin çi dixwazin û pêwîst e çi bikin.

Ger partiyên kurd yên Sûriyê di zûtirîn dem de xwe nekin yek û bernameyeke zengîl danerêjin û nakokiyên xwe nedin aliyekî, wê vê derfeta zêrîn ku ji wan re çêbûye ji dest here û heman senaryoya Kerkûkê û navçeyên veqetandî li Rojavayê Kurdistanê `parçê Kurdistanê di bin destê Sûriyê de` jî dûbare dibe. Pêwîst e di zûtirîn dem de hemû kom bibin û ne ku tenê bernameyekê bo pêşeroja xwe deynin, lê hikûmetekê bo Rojavayê Kurdistanê damezrînin û wezaret û fermangehan jî diyar bikin. Pêwîst e postên êminiyê û leşkerî jî yekalî bikin û rêvebirina Kurdistaneke azad bixin ser kaxezê û nîv destûrekê jî binivîsin. Ev kar divê niha bê kirin û rojek tenê jî piştî rûxandina rêjîma Beşar Esad dereng e.

**Divê demek zû Kurdên Rojava konferansek taybet saz bikin**

Dereng yan zû rêjîma Beşar Esad jinav diçe. Tevahiya dinyayê pişta xwe daye rêjîma Beşar Esad. Tenê di vê heftiyê de wezîra derve ya Amerîka Hillary Clinton du caran li ser Sûriyê bersiv daye û daxwaza ji kar avêtina Beşar Esad kir. Serokwezîrê Brîtanyayê David Cameron û şahê Erebistana Siudî şah Ebdulla û serokê Amerîka Barak Obama vê heftê bi telefonê qala rûxandina rêjîma Beşar Esad kirine. Bi ser de Rûsya jî ku ji yekem roja avabûna dewleta Sûriyê hevbenda wê ye, daxwaza dawîanîna desthilata Baasê dike. Nemana Beşar Esad îro sibê ye û eger Kurdên Sûriyê xwe amade nekin, dibin tena wendakiriyê pêşeroja Sûriyê.

Cihê giriyê ye ku siyasetmedarên kurd xema destûreke nû dixun bo Sûriyê û daxwaza guherîna navê wê dikin ji Komara Erebî ya Sûriyê bo Komara Sûriyê. Gelo nabînin ku Kurdên Îraqê jî heman kar kirin piştî rûxandina Saddam Huseyîn? Navê Îraqê guherandin bo Îraqa Federe û destûreke nû jî hat nivîsîn û Kurd roleke mezin lîstin di avabûna dewleta Îraqê de, lê ti sûdeke wê bo Kurdistanê nebû.

Kurdên Sûriyê qet pêwîst nake vê qonaxê dubare bikin ku Kurdên Îraqê tê de derbas bûn. Xwe girêdan bi paytextê û nivîsîna destûr û danîna madeyên cihêreng û mikurhatina bi Kurdan weke duyemîn neteweya Sûriyê tenê xwe xapandin e û hew. Baştirîn çareserî bo Kurdên Sûriyê ew e bilez konferansekê girêbidin û bi awayekî xwe amade bikin ku eger îro Esad li ser kar çû ew sibe hikûmet û paytext û dezgeha polîs û ewlehiya xwe hebin.

Herwiha pir girîng e ku di zûtirîn demê de nexşeyeke ron û eşkere ya Rojavayê Kurdistanê çap bikin, hem siyasetmedar û hem ronakbîr û hem kesên ji rêzê xwe pê bidin nasîn. Ev nexşe pêwîst e hemû bajar, bajarok, gund û zeviyên Rojavayê Kurdistanê lixwe bigire, ligel rûxandina rêjîma Baasê re yek ser Kurd dest deynin ser hemuyan û saziyên kurd tê de destbi kar bikin. Başûrê Kurdistanê piştî rûxandina Saddam Huseyîn ev derfet ji dest da. Hemû deverên veqetandî girtin destê xwe, lê bi destûr û hinek madeyên yasayî û sozan hatin xapandin. Ev pilan pêwîst nake li Sûriyê jî dubare bibe.

Di heman demê de erkê ser milê Hikûmeta Herêma Kurdistanê ye jî ku bilez Kurdên Sûriyê kom bike û organîze bike. Hikûmeta Herêma Kurdistanê vêga weke bavekî ye bo parçên din yên Kurdistanê. Kurdên parçên dî bi hêvî û umêd li Herêma Kurdistanê dinerin. Niha Hikûmeta Herêma Kurdistanê xwedî şiyan û pere ye konferansekê bo Kurdên Sûriyê saz bike li paytexta welatekî Ewropa yê serbixwe. Pir girîng e konferanseke kurdî bê sazkirin û tenê Kurdên Sûriyê tê de beşdar bin û hikûmeta Rojavayê Kurdistanê ava bikin. Konferansek bes e.

Eger Kurdên Sûriyê tecrûbeya wan tune di hukimkirin û rêvebirinê de, êdî pêwîst e Hikûmeta Herêma Kurdistanê wezîr û rêveberên teqawûd têxe xizmeta wan û pisporên ewlehî û polîs û pêşmergeyan amade bike ku hevkariya hikûmeta Rojavayê Kurdistanê bikin.

Ger heya niha Kurd bi zorê bi Sûriyê ve hatibin girêdan, êdî dema wê hatiye jê cuda bibin. Ger heya niha partiyên wan parçe parçe û ne hevdeng bûn dema wê yekê hatiye bibin yek û xwe saz bikin. Ne ku tenê jin û zarok û ciwan çavê wan li destê partiyên kurdî yên wî welatî ne, bigire Ereban jî çaverêya wêya dikirin ku ligel yekemîn roja serhildanê kurd serî hildin û hîç nebe navçeyên xwe azad bikin. Ger Kurd xwe nekin yek û hikûmetekê ava nekin û ji bo damezrandina herêmekê kar nekin, divê heta hetayê çaverêyên dilovaniya Şamê û madeyên yasayî û destûrî bin.

## Xaçepirs

**Çeperast:** 1- Herêmek bakurê Kurdistanê – Kar, xebat, emel – Çêtir, paktir, baştir. 2- Destnîşankirina tiştekî – Bide, bîne, bi min de (berepaş) – Qebûlkirin, pejirandin. 3- Amadekarî, tedarik, bi rêkûpêkkirin (berepaş) – Orgeneralê behr û deryayê. 4- Nîşana elementa Manganez – Xwelî û reşîya binê beroşê (berepaş) – Hawar, gazî, feryad – Paq, hêt, navbera kulîmek û ling. 5- Henek, yarî, tinaz (berepaş) – Yan, yan jî. 6- Cemidî, qerisî, ne germ – Heywanek avî û hov. 7- Parçeyê ax û herîyê (berepaş) – Safî, zelal. 8- Navekî zilaman, ebedî (berepaş) – Rez, bax û bîstanê tirî. 9- Zimanê Ereban – Tûj, dişewitîne (berepaş). 10- Xanîyê “ka”yê, xanîyê ku êm û kaya heywanan tê de ye – Heywanek bi strî.

**Serejêr:** 1-Serxweş, kêfxweş, jixweçûyî – Pûşê hûrkirî, êmê heywanan (berepaş). 2- Aşiqî, dilketin, hezkirin. 3- Kesê ku gotina xwe venaşêre, rasterast (berepaş). 4- Demsala piştî buharê – Reş, qemer. 5- Hesinê tenik (berepaş) – Ta, nex. 6- Rûnê kuncîyan, kuncîyên perçiqandî. 7- Tirîyê hişkkirî. 8- Roja em tê de ne, ne doh – Bergeh, qat, pêlik. 9- Wek şêran, bi şêr ve girêdayî – 24 seet, ne şev. 10- Armanc, daxwaza dil – Kesê şîngirtî, navekî zilaman. 11- Ji bo çi, qey, sebeb. 12- Êş, jan. 13- Pêk anî, çêkir. 14- Pareyên ku bi erzanî ji ser pişta xelkê tên qezenckirin (berepaş). 15- Notayek. 16- Damar, reh, kok


Bersivên hejmara 110

# Kravat xeter e



**Rûdaw -** Li gor lêkolîneke nû, girêdana kravatê bi şêweyekî tund ji aliyê zilaman pirsgirêkên tendirustî ji wan re çêdike û jiyana wan dixe xeterê.

Li gor pisporê nexweşiyên mêjî û demaran, Dr. Mihemed Yawuz, girêdana tund a kravatê zirarê dide tendirustiya mirovan, bi taybetî ew zilamên ku di rojê de betirî 8 demjimêran kravatê hildigrin. Li gor axaftina wî pisporî, kesên ku kravatê bi tundî girêdidin, rastî serêşî, kêmbûna hevsengiya laşî, zêdebûna zextên derûnî, êşana stû, zû acizbûn, reqbûna demaran û penceşêra gewriyê dibin.

Dr. Mihemed Yawuz herwiha behsa wê yekê jî kir ku girêdana kravatê bi tundî rêya lûliyên anîn û birina xwînê digire û nahêle xwîn bi başî bigihije mejî û beşên din ên serî, ev jî pirsgirêkeke mezin a tendirustî ji bo mirovan çêdike.



# Sedemên nexweşiya şekir


Dr. Mihemed Deniz *

Di van salên dawî de bijîşk di îstatîstîkan de rêjeya nexweşiya şekir bi van hejmaran rêz dikin: Di sala 1976ê de li Amerîkayê rêjeya nexweşiya şekir ji % 6 bû û di sala 1994ê de derket ji %13; sala 1985ê li tevahiya cîhanê 30 milyon nexweşên şekir hebûn, sala 2008ê de hejmar derkete 246 milyonan. Rêxistina Tendirustiya Cîhanê WHO, diyar dike ku piştî 20 salan hejmar wê derkeve 360-370 milyonan. Federasyona Nexweşên Diyabetîk ya Navnetewî ÎDF jî dibêje wê hejmar bibe 400-420 milyon.



**Sedemên ku nexweşiya şekir bilind dikin çi ne ?**

**Dr. Mihemed Deniz:**

Di serî de divê em rewşa nexweşiya şekir binirxînin û divê em bandora teknîka pêşketî ji bîr nekin. Bi pêşketina teknolojiyê re mirov di aliyê tevgerê de pir lewaz bûne. Mînak: ji Amedê heta Stenbolê rêwîtiyê dikin lê bi temamî 5 deqeyan nameşin. Piraniya kar rûniştî tê kirin û gelek kes bi saetan li ber tv û komputerê rûdinin û bê tevger dimînin. Ev hemû bandorên neyînî ne ji bo nexweşiya şekir. Herwiha zanebûn, xwendin û aboriya baş gelek bandora wan li ser nexweşiya şekir hene. Kesên ku zanîngeh xilas kirine li gor kesên nexwendî û yê xizan bi wan re nexweşiya şekir zêde heye. Ji ber her diçe lebata mirovan kêm dibe û ji ber wê jî nexweşî zêde dibe. Ew kesên ku hertim rûniştî kardikin an jî bêkar in û dikevin stresê û ji ber ku wê stresê ji ser xwe bavêjin pir xwarinê dixwin. Ew xwarina ku dixwin nahelînin û ew hemû li wan dibin kîlo; wek tê zanîn kîloyên zêde ji bo tendirustiya mirov pir nebaş in.

**Nexweşiya şekir çiqas bi temen ve girêda ye?**

Dema ku em li gor temenê mirovan binirxînin, heta asteyekê mirov dikare bi temenê mezin ve jî girêbide. Mînak berê mirov heta 60- 65 salan jiyan dikirin. Lê niha bi pêşketina teknîka bijîşkiyê temenê mirov dibe 70 - 85 salî: bêgûman ev jî rê liber nexweşiyan vedike. Li vir ez dixwazim li ser bandora qelewiyê jî rawestim. Li Almanya ji sedî 44 - 47 kes kîloyên wan li ser kîloyên ne normal e, ev jî faktoreke mezin e ku bi wan mirovan re nexweşiya şekir derkeve. Bi rastî mijara nexweşiya şekir gelek berfireh e; di mijarên din de ez ê hewl bidim ku li ser bandora bilinbûn û nizimbûna şekir, nexweşiya şekir tîp 1, tîp 2 û şêweya dermankirina şekir rawestim.

***Amadekirin:***
***Zelal Çelîk***

** **Dr. Mihemed Deniz** ji Bakurê Kurdistanê ye, li Almanya dijî, pizîşkê giştî ye û bi taybetî bi nexweşiya şekir re mijûl dibe.*

## Robînê "Puzzel-King"



Ez roja 17.02.2007 li bajarê Almanya Bonnê hatime dinyayê. Temenê min 4 sal û nîv e. Bavê min ji rojava û dayîka min ji bakurê Kurdistanê ye. Ez niha li Bonnê dijîm û diçim Kindergartenê (bexçeyê zarokan). Li Kindergartenê bi almanî û li mal jî bi kurdî diaxifim. Bi her du zimanan jî baş dizanim. Li Kindergartenê navê min kirine "Puzzel-King", ji ber ku puzzel baş çêdikim. Gelek pêlîstokên min li mal hene, piraniya wan jî erebok in.

Xwarinên ez jê hez dikim: Spaghetti, pel (dolme û sarme), şorbe.

Her roj şîr û hingiv vedixum.

Hobiyên min: Lîstina bi topa pê, ger, lîstina bi erebokan (bi taybetî Mc Queen), çêkirina puzzel.

Hevalên min yê herî nêzîk: Asê, Îsmet, Juell û Sofia.

## Eger zarokê we li malê guhdariya we bike, lê li derve guhdariya we neke...



> Ev tê wateya ku li mal jî guhdariya we nake, lê ji tirsan, an jî sedemeke din, stûyê xwe li ber we ditewîne.

> Bi vî awayî zarok dixwaze hinek xwestekên xwe bîne ziman, li cihê ku hûn tenê hebin ew zarok nikare hinek tiştan bi we bide famkirin, an jî li ber mirovên din dixwaze bala we bikişîne ser wan xwestên ku hûn jê fam nakin.

> Eger ku zarok ne bextewar be û ji danûstandina ku pê re tê kirin ne razî be, wê demê tevgerînên bi vî awayî nîşan dide. Lewma ya herî baş ew e ku hûn ji kesên pispor alîkariyê bixwazin.

## FÊRÎ KURDÎ BIBE

Z ز



Zengil زه‌نگ

## Şêr û Kîvroşk

Carekê ji caran di nava daristanek tarî de şêrekî gelekî zalim hebû. Ji tirsa wî hemû ajalên nava daristanê ketibûn xofeke mezin. Rojekê ajal tev kom bûn û biryar dan ku biçin ji şêr re bêjin ku êdî pêwîst nake ew li neçîrê bigere, ajal bi xwe ewê her roj tîrûpişkê bikişînin û dora kê hat ew ê bi xwe here cem şêr û şêr wî dixwe.
Roj hat, roj çu, dora kîvroşkê hat. Bêgûman kîvroşkê nexwest bê xwarin. Ew fikirî ka çi bike. Di rê de xwe mijûl kir, hêdî hêdî çû û gelekî dereng gihişt cem şêr. Şêr jî aciz bû û mira mira wi bû, bi ser kîvroşkê de qîriya û pirsî: "Çima dereng hatî?" Kîvroşkê got: "Paşayê min, ez serê te neyêşînim, ez zû hatim lê li ser rêya min şêrekî har hebû, wî xwest min bixwe, hevala min xwar û ez jî bazdam, reviyam, li dora daristan geriyam, lewma ez dereng mam."
Dema şêr ev yek bihîst, çavên wî sor bûn, êdî birçîbûn ji bîr kir. Ji kîvroşkê re got "De zû cihê wî nîşanî min bide!" Kîvroşkê ew bir ser devê bîrek kûr, dema şêr serê xwe tewand, wêneyê xwe di avê de dît û hema xwe avêt binê bîrê, ser şêrê di bîrê de û êdî nema cardin were derva. Ev nûçe weka bombe li nava daristanê belav bû û herkes ket şahiyê ji ber ku kîvroşkê ew ji zalimekî mezin rizgar kirin.





Amedekirina rûpela zarokan: Sevda Şafîk